Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 80
31'ê Çileya Paşîn
Buha: 150 Tûmen

# agirî

YCDK Îranê Bû Endamê Fermî Yê IUSY'yê
R.8

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

Komara Demokratîk Ya Kurdistanê

# TEMENK KURT, LÊ TEJÎ DESTKEVT





Roj 2'yê Rêbendanê (22.01.2008)'an, rojeke dîrokî û cejna neteweyî ya Kurdan e. Di vê rojê de û di sala 1946'an de, yekemîn dewleta nûjen û demokratîk a Kurd bi navê Komara Kurdistanê li bajarê Mehabadê hate damezrandin. Kurdên her çar parçeyên Kurdistanê, nemaze Kurdên Kurdistana Îranê weke destkevteke neteweyî û dîrokê dinêrine vê rojê û bi cejn û şahiyan vê boneyê pîroz dikin. Îsal jî bi hinceta 62'hemîn salvegera avabûna Komara Kurdistanê, rê û resm û şahiyên hêja û berfireh, li Kurdistanê û welatên Ewopayê û Amerîka hatin lidarxistin. PDK Îranê avakerê Komara Kurdistanê ye û damezrandina Komara Kurdistanê şanazî û rûmetekê bi xwe dizane û niha jî alahilgirê armancên Komara Kurdistanê ye. Li binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê li bajarê Koyê a Kurdistana Başûr û bi beşdariya nûnerên partî û rêxistinên her 4 parçeyên Kurdistanê û hejmarek berçav ji Kadro û Pêşmergeyên vê partiyê ev roja girîng û dîrokî hate bibîranîn. Li kampên PDK Îranê û Komîteyên vê partiyê li welatên Ewropayê û Amerîka bi coşeke germ cejna salvegera avabûna Komara Kurdistanê pîroz kirin.

---

**Hunermenda Dengxweş Û Bedew Melek Rojhat, Di Hevpeyvînek Taybet Bi Agirî Re:**

## ''EZ PÊŞVEÇÛNEK PİRR MEZİN Lİ WARÊ MUZÎKÊ Dİ BAKÛRÊ KURDİSTANÊ DE DİBÎNİM''

Rûpel: 10-11



# Axavtina Rêzdar Mistefa Hicrî, Di Rê Û Rema 62'hemîn Salvegera Avabûna Komara Kurdistanê De

**Nûnerên birêz ên partî û rêxistinên Kurdî li her çar parçeyên Kurdistanê!**



**Xwîşk û birayên hêja!**

Hûn xêr bihên bo rê û rema pîrozkirina 62'hemîn salvegera Komara Kurdistanê ku ji bo hemû neteweya Kurd destkevteke dîrokî bû. Beşdariya we di vê rê û resmê de, nîşana rêzgirtin ji wê bibîranîna dîrokî ye û hurmetdanan e ji bo hemû rêvîngên rêbaza Komara Kurdistanê û ji hemû wan kesan e ku di vê rê û rêbazê de şehîd bûne û di vê rêyê de xebat û têkoşîna xwe didomînin.

Li gora edetê herdemî, PDK Îranê, di roja 2'yê Rêbendana hemû salekê de, vê bîranînê pîroz dike. Partiya Demokrat ku rêrewê Komara Kurdistanê û Pêşewayê mezin yê Kurd Qazî Mihemedê Şehîd e, bi serbilindî ve xwe bi rêvîngê wê rêyê dizane û bona bicîgihandina hêvî û xweziyên Komara canemerg a Kurdistanê bi berdewamî dixebite.

Neteweya Kurd limêj dem e û gellek beriya Komara Kurdistanê û ji bo bidestveanîna mafê neteweyî, azadî û nehêlana stem û zordariyê li ser neteweya xwe bêrawestan û cangorîtî xebat kiriye û di vê rêyê de gellek rêberên leheng û qehreman ên Kurdan hebûne ku jiyana xwe ji dest dane û şehîd bûne, pirr caran welatê me li her rexekê ve kavil û wêran kirine û hatiye şewitandin û jin û zarokên me Kurdan hatine qirkirin. Hemû ew serpêhatî û bîranîn û tev xebata han ji bo me Kurdan cihê rûmet û serbilindiyê ye, lê Komara Kurdistanê bi hinek cudahiyan ve ku tevî serhildanên berê û desthilatdariya Kurd hebûye, bi tevahî biferq e. Li vir ne ez dikarim basa hemû wan xalên bihêz û lawaz bikim ku Komara Kurdistanê hebûn, ne derfeta wê jî ye, lê tenê ez dê qala hinek cudahiyan di vê komarê de bikim. Ji ber ku bi rastî Komara Kurdistanê veguhertinek bû di dîroka xebata gelê Kurd ji bo bidestxistina mafê neteweyî û rizgarbûn di bin barê kedxwarî û zordariyê de, herwiha veguhertinek bû li şekl û awayê desthilatdariya Kurd li wî cihî ku desthilat di dest de bûye. Yek ji wan taybetmendiyên ku Komara Kurdistanê hebû, eva bû ku desthilatdarî di bin destê takekesekê, serok eşîr yan rêberekî olî de derket û bû hikûmeteke nûjen ku dem û dezgeh û sazî jê re ava bûn. 11 meh demeke pirr kurt e bona vê yekê ku em bikaribin dadweriyeke temam û kemilî li ser Komara Kurdistanê bikin, lê her di wan yanzdeh heyvan de, komek sazî û dezgehên demokratîk hatin avakirin ku di sîstema derbasbûyiya desthilatdariya Kurdî de bênimûne bûn, mafê wekhev ji bo tev takekesên civakê yek ji wan bidestxistiyên dîrokî bû. Di serdemkê de ku Komara Kurdistanê pêk hat, serbarê vê yekê ku pêkhateya civakê pêkhateyeke erşîrî bû û nêrîn û ramanên paremî û paşverû bi ser civaka Kurdî de zal û serdest bûn. Di wê civakê de girîngiya herî kêm ji jinan û ciwanan re dihat dayîn, lê Komara Kurdistanê ew du tex û qat di nava civaka Kurdistanê de zindî û mezin kirin. Ji bo ku ew du çîn û qat bi agahî û hişyariya xwe di xizmeta tevgera kurd de bibin, her di wî serdemî de, rêxistina Yekîtiya Ciwanên Demokrat û Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistanê hatin avakirin. Ji wê çendê balkêştir eva bû ku Pêşewayê nemir serbarê vê yekê ku bi xwe mirovekî oldar bû, lê bona vê çendê wî daxwaz kir ku berî her kesî hevser û keçên wî biçin û di rêxistina Yekîtiya Jinan de beşdariyê bikin, ji bo ku heke ew kar li gor bîr û ramana hinek kesan eyb, ar û îradek dihat hesibandin, ew tilisme were şikandin û gel bihê handan ku rêz û hurmetê ji jinan û ciwanan bigirin. Ji wê demê virde heta niha, her bi pêrewî ji rênîşaniyên Komara Kurdistanê û Pêşewa Qazî Mihemed, PDK Îranê, Yekîtiya Ciwanan û Yekîtiya Jinan her di destpêkê de ava kirine û heta niha jî rêve dibe. Serbarê ew kosp û astengên ku hatine ser rêya Partiya Demokrat, ew du rêxistin jî rastî evraz û nişîvan hatiye, lê serbarê vê çendê niha jî wekî du hêzên xwedî karî û şiyan ên PDK Îranê û baskeke xurt û bihêz yê PDK Îranê ne, herwiha jin û ciwan hêzên alîkar ên tevgerê û pêşdeçûna bizava kurd di her çar parçeyên Kurdistanê de ne.

Cihêtiyeke din a ku em di wî serdemî de dibînin, eva ye ku di dema desthilatdariya hikûmetên herêmî ên Kurd ên beriya Komara Kurdistanê, pirr caran em mêze dikin ku desthilatdareke herêmekê hergav êrîş kiriye ser desthilatdariya deverên cîranê xwe, her çiqas Kurd jî be. Di dîrokê de em şahidê dehan komkujî, şewitandin û qirkirinên Kurdan bi dest serok eîşran in, bi destê desthilatdariya Kurd, ji bo dagirkirina ax û berfirehkirina desthilata xwe di herêmê de, lê berçavî û fenomeneke nû ku Komara Kurdistanê anî holê, sîstemeke taze ku guhertineke mezin di xebata neteweyî a gelê Kurd de bû, ew jî eva bû ku Komara Kurdistanê ne tenê her çavê temahê nebire beşên din ên Kurdistanê, belkî Komara Kurdistanê bû destkevteke neteweyî û dîrokî ji bo hemû gelê Kurd. Me dît ku birayên me li parçeyên din yên Kurdistanê, rû kirne Komara Kurdistanê û weke serbazekî Kurd amadeyî fîdakarî û cangorîkirinê bona parêzvanîkirin ji ax û destkevtiya Komara Kurdistanê bûn. Lewra fidakariya Barzaniyan bi serokatiya Mela Mistefayê nemir li bîra me naçe, her wiha ew Efserên şoreşvan ku di Kurdistana Îraqê de, bona beşdarîkirin di Komara Kurdistanê de û perwerde û elimandina Arteşa Kurdistanê hatin wir û di vê rêyê de jî jiyana xwe ji dest dan. Yan em xuya dikin ku di dirêjahiya dîorkê de, herdem di navbera desthilatdarên Kurd û neteweyên din ku li herêmên Kurdan de jiyan kirine, yan cîranên Kurdan bûne, şer, pevçûn û dijminatî bi awayekî bêwestan berdewam bûye, lê Komara Kurdistanê û Pêşewayê hizirtîj û zana yê Kurd, rêya demokratîk û hemdem ji bo çareserkirina pirsgirêkan tevî der û cînarên Kurd di Kurdistanê de, nemaze Turkên Azerbaycanê, payda kir. Lewre ew bû sebebê vê çendê ku li batî ew du netewe, wekî berê bi hev re şer bikin û bixwazin bi qirkirina fîzîkî hevdu ji ortê rakin û axa hev li yekdu pak bikin, Komara Kurdistanê lihevkirineke birayane û demokratîk tevî Hikûmeta Neteweyî a Azerbaycanê girê da, bi vî awayî ku li wan cihên ku Kurd û Azerî tebayî hev bi têkelî û bihev re dijîn, li her dera ku yek ji wan netewane di pirraniyê de bû, rêvebirinê digire dest xwe û yên din jî li gora nifûs di rêvebirina desthilatê de beşdar dibin. Di vê derbarê de bû ku hemû deb û edet û tev çand, kultur û hunereke kêmneteweyan, di herêma Kurdistanê de hatibû parastin, hemû kesekî mafê vê yekê hebû, tev ol û mesebekê, gişt zimanekê heq hebû ku huner, kultur û deb û edetên xwe pêşde bibe û di vê derheqê de nehatiye dîtin, tu belge û dukomentek di ber dest de nine ku neteweyekê weke nûnerê gelekê gazinde kiribe û rexne girtibe an doz vekiribe. Bi vî awayî em dibînin di navbera du neteweyên Kurd û Azerî de ku di derbasbûyî de gêre, kêşe û pevçûnên zaf û şer û kuştin hebûn, di tevahiya wê demê de biratiyeke xurt di navbeyna wan du gelan de hakim bû. Ya balkêş eva ye ku piştî 62 salan ku bi ser vê bûyerê de derbas dibe, niha jî hinek ji Komonîstên kilasîk li Îranê û her wiha hinek ji Îraniyên Şovenîst û alîgirên Komara Îslamî a Îranê, neteweyên Îranê ji vê yekê ditirsînin ku mafê neteweyî û desthilata neteweyan bi ser deverên xwe di şeklê otonomî yan federalîzmê de, dê bibe sedema nifşkujiyê û xelk dê berbine canê hev û dê hevdu bikujin. Evana ew kes in ku niha jî piştî derbasbûna 62 salan ji wê bûyerê, ewa ku dikeve û tê mêjiyê wan, tenê rêçareya kuştin, birrîn, şewitandin û wêrankirinê ye. Di halekê de du hikûmetên herêmî yên Azerbaycan û Kurdistanê, 62 salan beriya niha, ew pirs bi awayekî demokratîk çareser kirin.

Heke em bifikirin ku 62 salan berî niha ku xelkê çand û ramaneke din hebû, di wî serdemî de, hikûmeteke nû û modern a hemdem çawa karî fikr, bîr û ramana xwe

biguherîne û çawa şiya seha nasyonalîstî a xelkê xurt û berfireh bike. Ji bilî vê çendê ku di wê demê de hejmareke berçav rojname hatin çapkirin ku xizmet bi jordeçûna zanyarî û hissa neteweyî a xelkê dikirin, heta di vê derheqê de xelk jî ku pirranî nexwendewar bû, di civaka wê demê a Kurdewarî de nehatin jibîrkirin. Ji bo jordebirina seha neteweyî a xelkê, Şano hate xurtkirin û geşandin. Şano ku beşek ji hunera naskirî a cîhanê ye, renge di wî serdemî de bi kêmî pûte û girîngî jê re dihat dayîn. Lê di wê demê de şano û şanogerî dest pê kir û **Dayîka Nîştiman** yek ji wan tiyartoyan bû ku di wî çaxî de, li hemû cihên ku hikûmeta Kurd serdest bû, dihate nîşandan û xelk li dora xwe kom dikir û derd, kul û kederên xelkê bi zimanê şanoyê dida xuyakirin. Lê mixabin, dijminên gelê Kurd, bi taybet Hikûmeta Pehlewî weke hikûmeteke dîktator û paşverû ku nedikarî pêkhatina desthilateke demokratîk di parek ji welat de tab bike û rewa nedizanî, êrîş kire ser wê komarê û di rastî da komar canemerg bû. Pêşewa Qazî Mihemed û hevalên wî yên wefadar hatin îdamkirin, şehîd bûn û bûne goriyên neteweya xwe. Her çiqas emrê wê komarê kin û kurt bû, lê ew ders, ebret û şîretên ku Komarê ji me re bicî hêlane, ew wane û ezmûnên zaf in ku dikaribe rênîşana herî baş be ji bo domandina xebatê heta gihîştin bi hêvî û xweziyên me. Lewra jî piştî ew ders û fêrbûnane ye ku partiya komarê, partiya pêkîner a komarê, Pêşewayê mezin û qedirbilind ê komarê, Şehîd Qazî Mihemed, Sekreterê PDK Îranê her çiqas zû li hembêza me derêxistin, lê partiya wî, partiya avakerê komarê, her di çepera xebat û berxwedanê de maye. Her çiqas di hemû heyamê wan 62 salan de, di bin derbên dijminên dil bi kîn û kerb ên neteweya Kurd de bûye û fidakarî û bihayên herî mezin jê re daye, bona vê yekê ku rêbaza komarê û PDK her wilo bilind û zindî bimîne ku ew xebat û berxwedane ji bo me keç û xortên Komarê cihê rûmet û serfiraziyê ye. Partiya Demokrat ku piştî Pêşewa rêberên xwe ên herî mezin di vê çeper û meydanê de ji dest dane û gorî kirine, lê berevajî xwestek, daxwaz û xweziyên dijminan, berxwedaniya xwe her didomîne. Me pê nexweş e ku 62 sal piştî Hikûmeta Komarê, niha jî Hikûmetên dîktator desthilatdariya xwe bi ser gelê Kurd de dimeşînin, helbet ji bilî parçeyeke Kurdistanê. Di Îranê de ku Komara Kurdistanê pêk hat, niha piştî 62 salan, hikûmetek desthilatdar e ku di warê raman û fikirînê de û ji 62 salan berî niha ve gellek zêdetir paşde vegeriya ye. Serbarê vê çendê ku guhertinên mezin û kûr di vê midehê de li cîhanê çê bûne, di beşeke zaf a cîhanê de, demokrasî, mafê mirovan û federalîzm û herwiha mafê wekhev yê takekes û girûpan cihê xwe girtine, lê di Îranê de niha jî baskirin li pirsa neteweyî weke sûç û tawaneke mezin tê hesibandin. Em di serdemekê de ne ku mixabin niha di Îranê de dest û pêyên xelkê jêve dikin. Niha jî di girtîxaneyên Komara Îslamî de, xwendekarên Kurd, xebatkar û rojnamevan di bin îşkenceyê de tên kuştin. Çend rojan berî niha em şahid bûn ku xebatkarekî Xwendekar yê Kurd li bajarê Sine, Îbrahîm Lutfulahî di bin îşkenceya kirêgirtiyên Komara Îslamî de hate şehîdkirin. Niha ku em bona rêzgirtin ji bibîranîna Komara Kurdistanê li vir civiyane, rojnamegerê Kurd, Ednan Hesenpûr li benda sepandina biryara îdamê bi ser xwe de ye, bi guneha vê çendê ku rojnamevanekî Kurd e. Eva çarenivîsek e ku ne tenê her gelê Kurd li Kurdistana Îranê, belkî hemû neteweyên Îranê pê re berbirû ne. Di halekê de îro roj bi rojê welatên pêşverû ên cîhanê, îdamkirinê mehkûm dikin û di qanûnên xwe de radikin, di Komara Îslamî a Îranê de, di sala 2007'an de, hejmara îdamkirinan du qat zêdetirî sala 2006'an bûye û di nava kesên daliqandî de zarokên 15 û 16 salî jî hebûne.

Îro bêhurmetîkirina herî mezin û zêde bi Jinan tê kirin. destkevta ciwanên kurd û



neteweyên din ên Îranê, nemaze gelê Kurd, ji Komara Îslamî, vê hikûmeta paşverû, îtiyad, bêhêvîtî, betalî û bêkarî û rojreşî bûye, lê serbarê wan hemû derd û arîşane, hêvî gellek bihêz e. Ji ber ku Komara Îslamî a Îranê bi van tund û tûjî û afirandina rewşa dijwar û tepeserker heta niha nekariye dengê azadîxwaziya ciwanên Kurd li Kurdistanê bêdeng bike û bifetisîne. Her çiqas tund û tûjî zêde dibe, dengê azadîxwaziya ciwanên Kurd û neteweyên din ên Îranê bilindtir dibe. Jinên Îran û Kurdistanê, bidestxistinên siyasî ên xwe ku bi xwîna xwe bi destve anîne, çi din ji dest nadin û Komara Îslamî a Îranê nikare vê yekê ji dest û çengê wan derbixe. Rewşa han ji bo kedkar, mamosta, mamostayên zanîngehan û hemû çîn û texên civaka Îranê û Kurdewarî her wisan e.

Pirseke din ku hêviya me ji pêşerojê re zêdetir dike, eva ye ku guhertin û reform bi ser cîhanê de hatine, sîstemeke paşverû bi bîr û ramanên xwe ên paşdemayî weke Komara Îslamî a Îranê di dunyaya îro de nahê qebûlkirin. Xelkê bêzar û mandî, xelkê hişyar û zana çi din taba sîstemên dîktator nakin, lewra em temaşe dikin ku Komara Îslamî a Îranê, evro ne di asta hundirê welat de piştevaniyeke wilo maye û ne di asta derve de tu kes û aliyek weke caran piştgiriya wê rejîmê nake. Lê ji hemûyan girîngtir eva ye ku heke li Kurdistana Îranê, li ser axa Komara Kurdistanê, dîktatoriya reş û paremayî carê hikûmetê dike û desthilatdariya xwe dimeşîne. Heke li welatê Turkiyê xwîşk û birayên me niha jî di bin awayên cur bi cur ên cudahîdanan, stem, serkut û çewisandinan de ne, heke li Sûriyê jî her ew sitem û zordarî tê meşandin û bi awayekî hov û dirindane tevî xwîşk û birayên me tevdigerin, lê bi kêfxweşî ve di beşeke din a Kurdistanê de, Kurd gihîştine desthilatê, her çend ew desthilat, desthilata temam ya Kurdî bi ser hemû axa Kurd de nine, xwşîk û birayên me di Kurdistana Îraqê de, kêrhatî vê çendê ne ku mafê wan yê neteweyî, azadî, jiyan û derbaskirinek gellek çêtir ji ya ku niha hene, hebin. Lê pêvajoyek li wê para Kurdistanê dest pê kiriye ku ber bi pêşve diçe û em hêvîdar in bi bîr û ramana jîr û zanayane a rêberên wê desthilatê û xelkê şiyar yê Kurdistana Îraqê, ew desthilat roj li pey rojê xurttir bibe.

Xwîşk û birayên hêja, serbarê vê çendê ku derd, em xem û dijwariyên hevwelatiyên me di hemû parçeyên Kurdistanê de fam dikin, seh bi êş û azarên wan dikin, yên ku di girtîxaneyan de ne, yên ku di bin îşkenceyan de ne, ên ku bêhurmetî bi wan tê kirin û yên ku di girtîxaneyan de tên îdamkirin, em der û elemên wan fêm dikin û li vir em rêz û silavan ji wan re dişînin û ji wan re dibêjin her bijîn bona vê xebat û berxwedana qehremanane ku we li dijî dikûmeta herî hov, paşverû û gemar girtiye pêşberî xwe. Her di wê demê de, em rojên dîrokî û serkevtinên xwe jî cejn digirin û pîroz dikin. Eva nîşana zindîbûna me neteweya Kurd e, nîşana vê çendê ye ku derd û xem me bi çokde naînin û rojên dîrokî ji bîra me naçin. Ew leheng û egîdên ku di vê rêya serbilindiya neteweya xwe de jiyana xwe bext kirine, ji aliyê me her ezîz û xweştevî ne, em rêzê ji wan digirin û her wiha bi vê boneyê ve, em pîrozbahiyê ji hemû neteweya Kurd dikin ku destkevta hikûmeta Komara Kurdistanê bidestxistiya hemûyan e. Spas û pêzanîn ji wan kesan re jî ku vê rojê pîroz dikin, hemû salekê Kurd li cihekê ku hene, xerîbî û koçberiyê li Ewropa û Amerîkayê wê roja dîrokî bibîr tînin. Bi taybetî spas ji wan ciwanan re ku di heyamê hefteya borî de, di bin rewşa tund û tûj û dijwar a bindestiya Komara Îslamî de, li her kûçe, tax, gund, çiya, bajar û rê û rêgehekê ku ji wan re derfet pêk hatiye, cejna neteweyî a 2'yê Rêbendanê bibîr anîn, pîroz kirin û Komara Îslamî a Îranê tevî hemû berhevkariyan bona serkut û tepeserkirinê nekarî ye pêşiya vê liv û tevgera mirovî û neteweyî bigire. Her wiha spas û pêzanîn ji wan kesan re ku di rojên pêşiya me de, bi hinceta 2'yê Rêbendanê cejn û şahiyan lidar dixin û rêz ji vê roja dîrokî digirin.

Spas ji bo we ezîz û xweşteviyan, xwîşk û birayên me ên hêja ku beşdarî şahiya me bûne, Careke din Cejna 2'yê Rêbendanê ji we tev ezîzan, ji hemû gelê Kurd li her cihekê dijîn, pîroz be.

## Komek Ji Rojnamevanên Kurdistana Rojhilat, Bi Boneya 62'hemîn Salvegera Avabûna Komara Kurdistanê Konferansek Li Silêmaniyê Lidar Xistin

Roja pêncşem, 24.01.2008'an, bi hinceta 62'hemîn salvegera avabûna Komara Kurdistanê, konferansek ji aliyê komek ji rojnamevanên Kurdistana Rojhilat di hola "Diyalog" a Deftera Rêxistinên Demokratîk li bajarê Silêmaniyê birêve çû.



Di konferansa han de hejmarek zaf ji kesayetiyên siyasî, nûnerên partî û saziyên Kurdistanî, rewşenbîr û her wiha şandek ji PDK Îranê bi serokatiya Têmûr Mistefayî, endamê Deftera Siyasî ya PDK Îranê, berşdar bûn.

Birêz Têmûr Mistefayî di konferansê de gotarek derheq Komara Kurdistanê pêşkêş kir. Navhatî di gotara xwe de îşare bi girîngiya Komara Kurdistanê di wê serdemê de kir û got li serdemekê ku di Ewropaya pêşketî de Naziyan xelkê Cihû di kûrexaneyên agir de dişewitandin, di bin sîbera Komara Kurdistanê de alîgirên hemû olan di aştî û azadiyê de, bi hev re dijiyan.

Piştre peyamên Komleya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê – Rewta Reform û Geşepêdanê, ji aliyê **Aso Îslampenah** û peyama Rêkeftina Demokratîk a Kurd li Sûriyê ji aliyê **Hecî Efrînî** ve hate pêşkêşkirin.

Her wiha berpirsê Taya 4 a Partiya Demokrat ya Kurdistanê, Saziya Azadiya Ciwanan, Civata Xwendekaran û Radyo Medeniyet bi vê hincetê peyamên xwe ên pîrozbahiyê şadibûn.

Piştre mamosta **Şêrko Bêkes** û xatûna **Nahîd Husênî,** çend helbest bi vê hincetê pêşkêş kirin.

Li doma konferansê de, **Mela Bextiyar,** endamê Deftera Siyasî ya YNK'ê derheq Komara Kurdistanê gotarek pêşkêş kir.

Her wiha **Kerîz Zend**, mamosta û dîroknas û Keywan Azad Enwer, mamostayê zanîngeha Silêmaniyê û **Seyîdkemal Îbrahîmî**, Pêşmergeyê PDK Îranê li ser Komara Kurdistanê û kesayetiya Pêşewa Qazî Mihemed gotarên xwe pêşkêş kirin.

Konferans bi xwendina helbestekê ji aliyê xatûna **Niyan Mehmûd** bi dawî hat.

## Cejna 2'ê Rêbendanê Li Swêdê Hate Pîrozkirin

Roja 26.01.2008'an, komîteya Hevkarî a Partiyên siyasî yên Kurd û Kurdistanî li welatê Swêdê, rê û resmek bi beşdariya hezar kesî li her çar parçeyên Kurdistanê birêve bir.




Rê û resm bi xwendina sirûda neteweyî ya "Ey Reqîb" û deqîqeyek bêdengî ji bo canê paqij ê şehîdên Kurdistanê dest pê kir.

Piştre peyama Komîteya Hevkarî a Partiyên Siyasî yên Kurd û Kurdistanî ku ji 23 partî û saziyên her çar parçeyên Kurdistanê pêk hatibû, ji aliyê Şefîq Kaya ve hate pêşkêşkirin.

Piştre peyama komîteya PDK Îranê li welatê Swêdê ji aliyê **Qasim Qarimanî** ve hate pêşkêşkirin.

Her wiha peyamên PDK ji aliyê Qadir Ezîz, nûnerê Serokê Herêma Kurdistanê û peyama Kongireya Neteweyên Îrana Federal ji aliyê Mihemed Zayendî, nûnerê Kongireya Neteweyên Îrana Federal ve hatin xwendin.

Piştre peyama Federasiyona Komeleyên Kurdistanî li Swêdê, ji aliyê Selam Cizîrî û peyama Yekîtiyên Jinên Demokrat, Ciwanên Demokrat ên Kurdistana Îranê û Yekîtiya Kurdan ji aliyê Farûq Derwîşî ve hate xwendin.

Hêjayî gotinê ye ku çend partî û saziyên Swêdî, di rê û resmê de peyamên pîrozbahiyên xwe pêşkêş kirin.

Her wiha çendîn stran, şano, helbest û pexşan di nava rê û resmê de hatin pêşkêşkirin.

## Cejna 2'ê Rêbendanê, Li Girava Yulend A Danîmarkê Hate Pîrozkirin

Roja şemî, 19.01.2008'an, bi hinceta 62'hemîn salvegera avabûna Komara Kurdistanê, rê û resmeke hêja û berfireh ji aliyê Yekîtiya Ciwanên Demokrat yên Kurdistana Îranê û bi hevkariya Komîteya Partiya Demokrat li welatê Danîmarkê, bi beşdariya sedan kesan, birêve çû.



Rê û resm bi sirûda netewî ya "Ey Reqîb" û deqîqeyek bêdengî bo canê paqij yê şehîdên Kurdistanê dest pê kir.

Piştre peyama Komîteya PDK Îranê li wî welatî ji aliyê **Ebdulkerîm Pehlûsay** ve hate xwendin.

Herwiha peyama YCDK Îranê ji aliyê **Mihyedîn Veysî** ve hate xwendin.

Hêjayî gotinê ye ku di vê rê û resmê de YNK û PDK û Civata Kurdî li Alburgê, peyama pîrozbahiyê şandibûn ku hatne xwendin.

Herwiha çend sirûd û stran jî di nava cejna neteweyî ya 2'yê Rêbendanê de hatin pêşkêşkirin.

Cejn bi şahî û dîlanê de bi dawî hat.

## Li Hewlêrê Semînarek Li Ser Komara Kurdistanê Birêve Çû




Roja înê, 25.01.2008'an, Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê bi hevkariya Yekîtiya Qutabiyên Kurdistanê, semînarek li ser Komara Kurdistanê, li navenda rewşenbîrî a zanîngeha Selahedîn li bajarê Hewlêr a paytexta Herêma Kurdistanê ji bo birêz **Erfan Rehnimûn**, endamê Ravêjkar yê Komîteya Navendî a PDK Îranê û **Rênas Cano**, Sekreterê Giştî yê Yekîtiya Qutabiyên Kurdistanê pêk anî.

Semînar bi xwendina sirûda neteweyî ya "Ey Reqîb" û deqîqeyek bêdengî ji bo canê paqij ê şehîdên Kurdisanê dest pê kir.

Piştre Rênas Cano, axavtina xwe ya taybet li ser dewlet – netewe û berhevdana sîstema han tevî Komara Kurdistanê, pêşkêş kir.

Piştre Erfan Rehnimûn li ser pirosesa asîmîlasiyona neteweya Kurd bi destê rejîma Şah û her wiha zirûfa pêkhatina Komeleya Vejîna Kurd û çawaniya avabûna PDK Îranê, çawaniya avabûna Komara Kurdistanê û rola Pêşewa Qazî Mihemed di damezrandina Komara Kurdistanê de axivî.

Piştî pêşkêşkirina du mijarên han, beşdarên semînarê, pirsiyarên xwe pêşkêşî Rênas Cano û Erfan Rehnimûn kirin ku bersiva wan hate dayîn.

## Li Bajarên Kurdistanê, Cejna 2'ê Rêbendanê Bi Coşek Germ Hate Pîrozkirin

Bi boneya bibîranîn û pîrozkirina 62'hemîn salvegera avabûna Komara Kurdistanê, li pirraniya gund û bajarên Kurdistana Îranê, çalakiyên berfireh ên pîrozkirinê ji aliyê gel ve hatin birêvebirin û rêz ji vê cejna neteweyî û dîrokî ya Kurdan girtin.

Li Makoyê heta Îlamê, gel bi çalakiyên cur bi cur ên pîrozkirinê û lidarxistina şahiyan ev bone pîroz kirin.

Gel bi belavkirina trakt û dirûşmên şoreşgerane yên taybet bi vê boneya neteweyî bi awayekî berfireh ev roj bibîr anîn.

Herwiha Wênê, CDyên berhevkirî ên PDK Îranê û daxuyaniya Deftera Siyasî a partiyê li gellek cihan belav kirin.

## ŞİROVEYA PEYVÊN SİYASÎ

Berhevkar: Omîd Esxeran
omid_anbi@yahoo.com



### Parleman Û Parlemantarîzm "Parliamentarism"

Parleman yan meclîsa nûnerên gel ku giringtirîn erka wê darêtin û pesendkirina yasayan e, weke dilê demokrasiyê tê hesibandin.

Berheqî û rewabûna Parlemanê li ser bingeha nûneratî ji aliyê gel ve tê diyarîkirin. Di hin welatan weke Ingilistanê de, meclîsa duyem weke beşek ji qiralî(eşrafiyet) a kevn li ser bingeha nûneratîkirin ji aliyê gel ve hatiye damezrandin. Lê di gişt demokrasiyan de, meclîsa sereke, ji rêya hilbijartinan ve tê pêkanîn. Serbarê vana, di warê dîroka demokrasiyê de, parleman bi qasî hev demokratîk nebûne. Bihêzbûna navendîtiyê, hejmara dengderan û nemana astengên cur bi cur li ser rêya hilbjiartinê, hewcedarê demokrartîkkirina Parlemanan bûye. Nêzîk 1/3 Parlemanên cîhanê ji du civatan pêk tên. Nîviya endamên meclîsa duyem rasterast ji aliyê gel ve tên hilbijartin. Nîviya endamên din jî tên danîn yan jî ne rasterast tên hilbijartin. Hêjayê gotinê ye ku rakirina meclîsa duyem ne sereke ye. Belku hizra parastina meclîsa duyem her weke xwe bihêz e, bi taybet di welatên federal weke Amerîka û Almaniya de ku meclîsa duyem weke nûnerê herêman dihesibe.

Hilbijartin ji bo parlemanê di pirraniya welatan de, hewcehî bi hin mercan heye. Armanca merc û pîvanên han dabînkirina karîn û şiyana endanên parlemanê li birêvebirina kar û berpirsiyariyên wan de ye.

Perlemantarîzm yan sîstema parlemanî, pêkhatî ye ji sîstemek desthilatdariyê ku tê de desthilata cîbicîrkirinê di meşandina kar û xebatên xwe de, li hember desthilata yasadanan (Parleman)ê, berpirsiyar e. Di sîstema han de divêt serokê desthilata cîbicîkirinê (Serok Wezîr) û wezîr endamên parlemanê bin û ji aliyê pirraniya endamên parlemanê ve werin hilbjiartin. Her demekê ku serokê desthilata birêvebirinê baweriya parlamanê ji dest da, divêt dest ji kar berde, yan jî daxwazê ji serokê welat( Şah yan Serok Komar) bike ku parlemanê hilweşîne û biryara hilbijartinek nû a parlemanê bide. Wê demê parlemana nû jî divêt bawerî yan nebûna baweriya xwe ji deweletê re rabigehîne. Heke parlemana nû dengê erênî neda dewletê, divêt serokê dewletê bilez dest ji karê xwe berde û wê demê ye ku dewlet tê hiloşandin. Vêca wê demê serokê welat daxwazê ji pirraniya endamên parlemanê dike ku dewleteke nû ava bikin yan jî kesekê ji bo pêkanîna kabîneyê destnîşan bikin. Di sîstemên parlemanî de, her yek ji endamên kabîneyê dikarin gelaleyên yasayî binivîsînin û piştî pesendkirina wê ji aliyê kabînê ve, biçe ber destê parlemanê.

Birîtaniya, Swêd, Turkiye, Îtaliya û hejmarek ji welatên Amerîkaya Latîn, pêrewiyê ji sîstema han dikin û diparêzin.

Li hember sîstema parlemanî, sîstema serokatî heye ku Serok Komar weke serokê desthilata birêvebirinê tê diyarîkirin û desthilata yasadananê nikare ji ber nebûna baweriyê, Serokê Kamar li ser kar wêde bibe, meger demekê ku ew bi buxtana binpêkirina destûrê tawanbar kiribe û bikare buxtana han îsbat û biselimîne.

**Çavkanî:**
**"Ferhengî Ramiyarî Nîga"**
**"Dîmokrasî Bo Hemûyan"**

# Salvegera Kavilkirina Gundên Botik Û Dêman Li Bakûrê Kurdistana Rojhilat

**Amadekar/ Elî Munezemî û Azad Kurdî**

Hetanî niha çarenivîsa kêm neteweyên cîhanê wekî Kurdan bûye. Neteweya kurd di pêvajo û dirêjahiya dîroka xwe de gellek malwêranî, xwîrêjtin, qirkirin, penaberî, kavilkirin û bindestî dîtiye. Ji ber rewşa siyasî a Kurdan û parvebûna Kurdistanê di navbera çend dewletan de û hilketina wê li derdora çend dewletên gemar û dijî Kurd, dîroka gelê Kurd rastî pirr dijwarî, derdeserî, malwêranî û wd... kiriye.

Rewşa han lewra hatiye serê kurdan, ji ber ku maf û azadiyên berheq û însanî yên Kurdan herdem hatine binpêkirin û zilm û zordarî li dijî Kurdan hatiye meşandin. Keç û xortên Kurd jî tim li dijî vê yekê serhildane û xebat û berxwedanî kirine. Dijminên Kurdan herdem rêyek ji Kurdan re hêlan e, ew jî rêya şer bûye. Kurdan selimandiye ku neteweyeke aştîxwaz e û mirovên diyalog û gotûbêjê bona çareseriya pirsgirêkan in û bona vê yekê jî çend rêberên kurd jî hatine şehîdkirin; Kurd li tebahî û jiyana biratiyê bi cîranên xwe re hez dike û herdem li dijî şer bûye. Ji ber ku Kurd vê rastiyê baş dizanin ku şer jî ji bilî malxirabkirin, xwînrêjtin û birçitiyê tu encamên din nabe. Lewra weke rêyeke sepandî bi ser xwe mêzeyî şer kiriye û tenê ji ber berevanî ji man û hebûna xwe û bidestxistina mafê neteweyî yê xwe bêrawestan di hemû hal, rewş, qonax, qad û awayekê de ew rêya xebatê meşandiye. Çend sed sal e ku pêvajoya han di dîroka Kurdan de dişope.



Piştî şoreşa gelên Îranê di sala 1979'an de, careke din desthilata navendî û kedxwar bersiva **NA** da xwestek û daxwazên berheq û demokratîk ên Kurdan, haşa ji bûna Kurdan weke neteweyekê kirin, tu maf û azadiyeke nehate pejirandin û kar gihîşte cihekê, Xomênî rêberê olî yê Komara Îslamî fetwaya cîhadê (qirkirin) li dijî Kurdan da û mixabin şer li seranserê Kurdistana Rojhilat dest pê kir û keç û xortên Kurd tevî dijminên kedxwar û gemar di rêya azadiyê de dest bi xebatê di nav refên partiyên siyasî ên Kurdî kirin û ew berxwedane heya roja îro jî bêrawestan her didome û heta roja serbestî û azadiyê jî dê her bimeşe.

Her zû desthiltdarên Komara Îslamî pêleke xurt û berfireh a serkut, çewsandin, kuştin, îdam, girtina mirovan û ji aliyê din ve kavil û wêrankirina gund û bajarên Kurdistanê dest pê kirin. Komkujiyên weke **Qarnê**, **Qelatan**, **Dîlançerx**, **Helbî**, **Çeqel Mistefa**, **Xelîfan**, **Îndirqaş**, **Hesûkend**, **Qeregul**, **Dêmesor**, **Gêçê**, **Sofiya**n û ...

Ji bilî wan komkujiyan ku di encama wan de sedan kes ji welatiyên sivîl ên Kurd hatin kuştin, gellek gund û malên xelkê li her cihî hatin xirab, kavil û wêrankirin. Di vê navberê de, li Bakûrê Kurdistana Îranê jî pêvajoya han a kavil û wêrankirina gund û malên xelkê û komkujî li dijî Kurdan dest pê kir.

Li wir em dê nihêrînekê li ser bûyera kavil û wêrankirina 2 gundên **Botik** û **Dêman** a ser bi devera Soma û Biradost a bajarê Urmiyê bikin û sedem û çawaniya vê bûyerê şîrove bikin. Ji ber ku ew bûyer bi kêmî di çapemenî û ragihandina Kurdî de ketiye berbas.

Weke herêmên din yên Kurdistanê, Kurdên vê deverê jî bi kêmî bûne koleyê dewletê, vêrgî nedane, belkî berevajî vê yekê piştgir û alîkarê tevgera azadîxwaziya Kurd bûne. Ji ber ku Komara Îslamî dixwast Kurdan bixe bin bandora xwe, kurd amade nebûn û nabin ku vê yekê bipejirînin. Wek tê zanîn li Bakûrê Kurdistana Îranê bi giştî û nemaze li her 2 gundên Botik û Dêman'ê zivistan dijwar e, sir, seqem, ba, bapêç û boran jiyana xelkê dijwar dike. Di Çileya Mezin a Zivistana sala 1363 (1984)'an, 23 salan berî niha gundên Botik û Dêman'ê hatin kavilkirin û di nava agir û alavên qirkirinê de, gundên han ji însanan hatin valakirin û di vê zivistan sar û seqem de, zaro û zêçên gundiyan direvin û ji bo rizgarkirina canê xwe gund cî dihêlin û dikevin çiya û deştê, heta aqibet digihîjin gundên **Sofikanûn**, **Çeman**, **Îşkeso** û **Şikeftik**ê û li wir bicih dibin. Xelkê wan gundan bi germ û gurrî malbatên malwêrankirî ên Botik û Dêmanê dihebînin û ciha didin wan û ew heta demeke zaf li cem birayên xwe dimînin, niha ew malbat li



derdora bajarê Urmiyê dijîn, nemaze li Qeregûz a vî bajarî. Ew helwesta gundiyên han cihê rêzgirtin, spas û qedirgirtinê ye ku bi mêrxasî tevî malxirabûyiyên her 2 gundan hevkarî kirin û nehêlan jiyana wan bikeve ber tirsê.

Di her 2 gundên Botik û Dêman'ê de zêdetirî 50 mal dijiyan û pirraniya wan mirovên welatparêz û şoreşger bûn. Sûç û guneha wan li gora dîtin û ramana rayedarên rejîma Komara Îslamî ku ev yek sûç û tawanek mezin e. Alîkarîkirin û penahdana wan gundiyan bi Pêşmergeyên PDK Îranê bû.

Hêzeke zaf a rejîmê di vê zistana sar de êrîşê dike ser wan her du gundan û dest bi xirabkirin û şewitandia mal û halê gundiyan dike, jin, zarok, pîr û kal dikevin ber pêla vê êrîşa hov û dirindane û ji malên xwe direvin. Bi giştî xanî û malên xelkê sivîl yên wan du gundan bi temamî hatine kavilkirin, wêrankirin û şewitandin.

Li gora şahidên vê bûyerê Caşeke kirêgirtî bi navê **Gorsêl** di kavilkirin û şewitandina wan gundan de beşdar bûye. Di dema şewitandian malan de, Gorsêl nehêlabû heta jinek zaroka xwe ya nav dergûşê de jî hilbigre, Pasdarekî din zaroka han di nava agir de rizgar dike.

Bi sedema wêran û şewitandina wan du gundan, zirar û xisareke mezin û zaf li mal û malatên gundiyan ket; heywan û malatê gundiyên cotkar û zehmetkêş ku mî, bizin, çêlek, terş û teval û gellek sewalên din bûn, hatin jinavbirin.

Li hember vê kiryara nemirovane, dewletê ne tenê zirar û ziyanên xelkê ji wan re qerebû nekir, belkî heta tu alîkariyek bi wî xelkê ku di wê zivistana sar de bê mal, hal û serpenah mabû, nekir. Di halekê de, di demên wilo de parastin û hevandina xelkê sivîl û bêguneh dikeve stûyê dewletê. Heke fidakarî û mêrxasiya xelkê wan gundên ku bi xelkê jêqewimî yên gundiyên Botik û Dêman'ê re alîkarî neba, ew dê rastî gellek dijwar û aloziyan bihatiban û bêguman dê pirr kes jî biban gorî.

Bûyera hov û nemirovane a kavilkirin û şewitandina gundên Botik û Dêman'ê û gellek kiryarên din yên rejîma Komara Îslamî a Îranê li dijî neteweya kurd û gelên din ên Îranê weke xaleke reş û kirinek dijî exlaq û pirensîpên mirovahiyê di karnameya tarî a vê hikûmetê hatine tomarkirin û qet ji bîr naçin.

# Pirsgirêka Şewatê Li Kurdistanê

**Hemîd Muxtarî**
**tishk_ronahi@yahoo.com**

Xwendevanên hêja, her weke hûn agahdar in, heyemekê beriya niha bi sedema qetbûna gazê di sir û seqema çendîn pileya jêr sifrê de, xelkê Îranê bi giştî û nemaze xelkê Kurdistanê, di rewşeke gellek dijwar de dijiyan û niha jî rewşa han li hinek deveran berdewam e û xelk bê hebûna şewatê jiyanê diqetînin.

Herwiha bi sedema han pirraniya karmend û karkerên îdare û kargehên dewletî û nedeweletî û xwendingehên Îranê bo heyamê çend rojan nekarîn kar û xebatên xwe yên rojane bimeşînin.

Hêjayê gotinê ye ku kirîza qetbûna gazê gellek parêzgehên Îranê weke Tehran, Loristan, Simnan, Hemedan, Erdebîl, Zencan, Qom, Qezwîn, Azerbaycana Rojhilat tevî sê ji çar parêzgehên Kurdistana Rojhilat anku Kirmaşan, Kurdistan û Azerbaycana Rojava bi xwe ve girt. Pirsa qetbûna gazê li hinek ji wan parêzgehan piştî yek an du rojan çareser bû, lê piştî derbazbûna heftiyekê ji qutbûna gazê li her sê parêzgehên kurdakincî, hêj pirsa han nehatiba çareserkirin û niha jî di hinek deverên Kurdistanê de xelk tevî pirsa han berbirû ne.

Qutbûna gazê û nebûn û kêmbûna şewatê di Kurdistanê de bû sedema jordeçûna bihaya nan, bi terzekê ku li bajarê Urmiyê, buhaya her nanekê gihîşte 200 tûmenan. Li gor çavkaniyên "kurdistanmedia"yê, li hinek bajarê Îranê û nemaze Kurdistanê, bi sedema nebûn û giranbûna buhaya nan, di navbera xelk û nanpêjan de, pevçûn çê bûye.

Her bi vê sedemê, bihaya her 20 lêtir nifta sipî di Îranê de gihîşte 6 hezar tûmenan û çendîn kes di sir û seqema dijwar de, jiyana xwe ji dest dan. Eva di halekê de ye ku Îran çaremîn welatê dewlemend di warê niftê di cîhanê de ye û pitir ji %80 ji dahata rejîma Îranê ji rêya firotina niftê dabîn dibe!

Serok Komarê Îranê, Ehmedînijad, bo derbazbûn ji sir û seqema zivistana dijwar de, daxwazê ji xelkê Îranê dike ku li cihê bikaranîna gaz û niftê, kincên zaf li xwe bikin.

Rejîma Îranê li cihê çareserkirina pirsên xelkê weke giranî, nebûna gaz, feqr û xizanî, fehşa, bêkarî, îtiyad û ... ku civaka Îranê ji dest wan dinale, dest û pêyên hevwelatiyên Îranê, tenê bi tawana azadîxwazî û eyankirina nerazîbûna xwe derheq rewşa heyî, qet dike yan wan didaliqîne.

Bo mînak kuştina hevwelatiyekî Kurd di roja 16.01.2008'an, di binkeya ewlekarî a rejîma Îranê li bajarê Sine, bi tawana azadîxwaziyê ku tevî nerazîbûna gellek sazî û rêxistinên Parêzvanên Mafê Mirovan û herwiha welatên weke Amerîka û gelek jî kesayetiyên mirovhez, hem di asta navxweyî û hem di asta navnetewî de berbirû bû û hate mehkûmkirin.

Rejîma Komara Îslamî a Îranê bi milyonan dolar ji dahata xelkê Îranê ku ji rêya firotina nift û gazê bi dest ve tê, ji bo girûpên terorîstî yên weke Hizbulaha Lubnanê, Hemas, Sipaha Mehdî, El Qaîde yan bidestveanîna çekên etomî û çek û kereseyên leşkerî û destavêtin di nav kar û barên welatê cîhanê û ... serf dike, di halekê de ku pitir ji 12 milyon ji xelkê Îranê li bin hêla feqr û hejariye de dijîn, bi milyonan kes bi sedema nebûna kar tûşî madeyên sirker bûne, bi hezaran kes ji welatê Îranê ber bi welatek din koç kirine. Heta li hinek deverên Îranê xelk ji hebûna ava paqij ya vexwarinê jî bêpar in. Piştî derbazbûna 4 salan ji bûyera dilêş a erdhejê li bajarê Bemê, ku pitir ji 45 hezar kes bûne gorî û canê xwe ji dest dan û mal û avahiyên wan bi giştî wêran bûn, niha jî di bin xîwetan di rewşeke pirr xirab de dijîn.



Erê gelo erk û wezîfeyên xelkê Îranê ji bo sernixuniya rejîma desthilatdar li Îranê û gihîştin bi azadî û demokrasiyê çi ne?



Her wek şehîd Dr. Qasimlo, rêberê navdar yê Kurd dibêje: "Neteweyek ku azadiyê bixwaze, divêt nirx û bihaya wê jî bide". Netewên Îranê, nemaze netewa Kurd jî gellek xwîn ji bo gihîştin bi azadiyê dane û bi hezaran zarokên wan bûne goriyê azadîxwaziyê, her çend ku heta niha jî negihîştine armancên xwe yên pîroz, lê bi armancên xwe nêzîk bûne.

Lewra bo vê çendê ku em gavek din bi azadiya welat nêzîk bibin, daxwazê ji hemû xelkê Îranê, nemaze xelkê Kurdistanê dikin ku di hilbijartinên gerra Heştem a Meclîsa Şewra Îslamî a Îranê ku qirar e roja 16.03.2008'an, birêve here, beşdariyê nekin û bi beşdarînekirina xwe di hilbijartin de carek din "NA"yê bêjin rejîma Îranê û berheqbûna rejîma Îslamî a Îranê di asta navxweyî û navneteweyî de zêdetir bixin bin pirsiyarê.

## Di Daxuyaniyekê De, YCDK Îranê Binav Hilbijartinên Gerra Heştemîn a Meclîsa Şêwra Îslamî A Îranê Baykut Kir

Ciwanên azadîxwaz yên Îranê!
Ciwanên azadîxwaz û welatparêz yên Kurdistanê!

Heyamekê berî niha navenda bi nav hilbjiartinên rejîma Komara Îslamî a Îranê roja 14.03.2008'an, bona birêvebirina heştemîn gerra bi nav hilbijartinên Meclîsa Şêwra Îslamî diyarî kir.

Di rastî de desthilatdarên rejîma Komara Îslamî ya Îranê dixwazin bi birêvebirina binav hilbijartinên han, xwe weke rejîmeke demokratîk bi raya giştî ya cîhanê bidin nasîn û rûçikê xwe yê rastîn di bin perdeya bi nav hilbijiartinan de bide veşartin.

Derbazbûna 30 sal ji temenê desthilata dîktatorî ya rejîma Îslamî a Îranê nîşan daye ku hilbijartin di vê rejîmê de tenê senaryoyek bûye bona mana xwe, rejîma Îranêne tenê rêz û hurmetê ji bo dengê




xelkê nagire, belku eger bi xwe jî di nava xwe de eniyeke weke eniya guhertinxwaz û ... pê bînin, tenê bi armanca xapandina xelkê û domandina temenê biyom yê xwe bo tepserkirina xelkê Îranê û nemaze ciwanên Îranê bûye.

Bi sedema vê çendê ku pirraniya nifûsa Îranê ji ciwanan pêk hatiye û ew xwediyê asta herî zêde ya dengdanê ne, lewra ciwanên Îranê dikarin di pirosesa dengdanê de bibin xwediyê roleke girîng.

Yekîtiya Ciwanên Demokrat yên Kurdistana Îranê, daxwazê ji gişt ciwanên xebatkar û azadîxwaz yên Îranê û nemaze Kurdistanê û hemû xelkê mafxwaz û evîndarê azadiya Kurdistanê dike ku bi beşdarînekirin di hibilbijartinan de, bêtir berheqbûna rejîma Komara Îslamî a Îranê bixin bin pirsiyarê û rejîma Îranê li hemberî raya giştî ya cîhanê şermezar bikin.

Serkevtin ji bo xebata berheq ya hemû ciwanên azadîxwaz

Hiloşe rejîma Komara Îslamî ya Îranê

**Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistana Îranê**
**19.01.2008**

## Şehîdkirina Îbrahîm Lutfulahî Û Riswabûneke Din Ji Bo Komara Îslamî ...

Roja 06.01.2008'an, Îbrahîm Lutfulahî, temen 27 salî xelkê gundê Fereciye yê bajarê Sine û xwendekarê zanîngehea Peyamê Nûr a wî bajarî, piştî derketin ji zanîngehê ji aliyê hêzên rejîma Komara Îslamî a Îranê ve hate girtin.

Êvariya roja 15.01.2008'an, hêzên Ewlekarî yên rejîmê, malbata Îbrahîm ji bo binkeya han gazî dikin û piştre ji wan re tê ragihandin ku kurê wan di girtîgehê de xwe kuştiye! û nav û nîşana gora wî di goristana bajarê Sine a bi navê "Bihêştê Muhemedî" de ji wan re didin.

Îdareya ewlekarî ya rejîma Îranê, gefê ji malbata şehîd Îbrahîm Lutfulahî, endamê çalak yê PDK Îranê dixwen ku tu zaniyarî û nûçeyekê derheq kuştina kurê xwe belav nekin!

Her wiha hêzên "WAWAK"ê sê roja piştî veşartina termê navhatî bavê Îbrahîm Lutfulahî, dibin ser gora kurî wî ku bi simêteke stûr hatibû qahîmkirin û gefê jê dixwen ku ger rê û resma serxweşiyê ji bo kurê xwe birêve bibe, her du kurên wî yên din jî dê bên kuştin.

Piştî şehîdkirina Îbrahîm, çendîn welat, sazî, komele û kesayetiyên Kurdistanî, Îranî û biyanî ên çalak di warên cur bi cur de nerazîbûna xwe derheq şehîdkirina navhatî eşkere kirin û ev kiryare şermezar kirin.

Wan her wiha daxwaza ronkirina çawaniya şehîdkirina Îbrahîm Lutfulahî kirine. Şan Mek Kurmek, Berdevkê Wezareta Karê Derve ya Amerîkayê, reja çarşem, 23.01.2008'an, serbarê xuyakirina nigeraniya xwe derheq şehîdkirina Îbrahîm, berpirsên rejîma Komara Îslamî a Îranê bi vê çendê tawanbar kir ku hevwelatiyên Îranê, dixe ber lêdan û îşkenceyan û bi awayekî neyasayî wan binçav dike.



Her wiha hemû rêxistinên siyasî û kesayetiyên parêzvanên mafê mirovan, di çendîn daxuyaniyên cuda cuda de, serbarê mehkûmkirina cinayeta han, daxwaza veqeliştina termê şehîd Îbrahîm, bona rohnkirina rastiyan kirine.

Di vê derbarê de malbata şehîd Lutfulahî, bi redkirina îdeaya xwekuştina lawê xwe, dibêje: Kurê me di binkeya Îdareya Ewlekarî de hatiye kuştin, ji ber ku heke Îbrahîm xwe kuştibe, çima rejîma Îranê bê agahdarkirina me termê wî teslîmê axê kiriye?!

Lewra em daxwazkarê derêxistin û veqeliştina termê Îbrahîm bona eşkerebûna rastiyan dikin.

Divêt were gotin ku serbarê eyankirina nerazîbûnê û daxwaza encamdana lêkolînan bona eşkerebûna rastiyên derheq çawaniya şehîdbûna Îbrahîm Lutfulahî, ji aliyê dehan welat û sazî û sedan kesên azadîxwaz û çalak ve, tu gavek erênî bona encamdana lêkolînên berfireh ji aliyê berpirsên rejîma Îranê ve nehatiye avêtin.

Lewra tu şik û gumanek derheq şehîdkirina Îbrahîm Lutfulahî ji aliyê hêzên dijî mirovî yên rejîma Komara Îslamî a Îranê nemaye. Çunku rejîma Îranê di dema 30 sal desthilatdariya xwe a reş de, bi hezaran kes ji xelkê Îranê û Kurdistanê kuştiye û bi sedan kes ji kesayetiyên siyasî ên neyarê xwe teror kirine.

Lewra encamdana cinayetên han ji aliyê rejîma Îranê, bi rohnî didin selimandin ku bikujên Îbrahîm Lutfulahî, xwendekarê Kurd û endamê çalak yê PDK Îranê jî, tenê û tenê berpirsên hêzên hov yên rejîma Îslamî a Îranê ne.

Hewce ye hemû wijdanên hişyar û mirovên azadîxwaz dengê xwe li dijî encamdana vê kiryara hov a rejîma Komara Îslamî bilind bikin û bila çi din xwîna mirovên sivîl bê xal û xerez nehê rêtin.

### YCDK Îranê Bû Endamê Fermî Yê Rêxistina Navneteweyî Ya IUSY'yê

Rojên 24 heya 27'ê Çileya Paşîn a 2008'an, Yekîtiya Navneteweyî a Ciwanên Sosyalîst (IUSY)ê, 26'emîn kongreya xwe li bajarê Santo Domîngo, paytexta Komara Domînîkanê lidar xist û bêtirî 80 rêxistinên taybet bi ciwanan zêdetirî 80 welatên cîhanê beşdarî wê kongreyê bûn.

Yekîtiya Ciwanan zêdetirî 2 salan e ku endamê Çavdêr ê "IUSY"yê bû. Di vê kongreyê de Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistana Îranê weke endamê fermî yê "IUSY"yê hate wergirtin û hem mafê dengdanê û hem mafê xweberbijarkirin ji bo rêberiya vê rêxistinê heye.

Hêjayî gotinê ye ku Yekîtiya Xwendekarên Kurdistana Îraqê jî di heman kongreyê de bû endamê fermî û Rêxistina Azadiya Ciwanan weke endamê çavdêr hate wergirtin.

Şanda YCDK Îranê di vê kongreyê de, **Loqman Ehmehî**, Berpirsiyarê Giştî yê Nûneriya Derveyî Welat a vê rêxistinê û **Nesrîn Şitab** beşdarî kongreya han bûn.

# BIWÊJ Û GOTINÊN PÊŞIYAN



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Di hemû zimanên dinê de biwêj û gotinên pêşiyan di jiyana civakê de cihekî giriîng digirin. Bingeha wêjeya her zimanî ji bêjinga van biwêj û gotinên pêşiyan pêk hatiye.

Hin caran her yek ji wan wekî şîret, rexne, pesndarî, rûmetdarî, nirxandin, ecibandin, mezinandin, şêwirmendî, serkeftin, binbarî, peywir û vatinî û hwd. Xwe li ber her mirovî/ê radixin û gellek rastreqiniyên jiyanê derpêşî mirov dikin. Çi biwêj û çi jî gotinên pêşiyan dibin, piştî gellek azmûn, ceribandin û nirxandinên kûr û berfireh derdiketine holê. Ji lewre ew tenê ne ayidê kesekî/ê an jî komekê ne. Ew, mîrateyên hezar salan ên tevê mirovahiyê ne.

Beriya nivîsê, biwêj dibin, gotinên pêşiyan dibin, herdu jî wekî du alav û navgînên navbera nivşê civakê yê borî û îro; an jî qasidê nivşê îro û nivşê bê(dahatûyê)dihatin bikaranîn. Ew biwêj û gotinên pêşiyan ji hêla civakê ve hatine/têne parastin, xebitandin û nirxandin. Li gorî şert û mercên jiyanê û li gorî rewşa civakê ya çandî û aborî gellek biwêj û gotinên din li xwe zêde kirine û nivş bi nivş û hêla mîratezadeyên zana û pisporên demê ve hatine veguhestin û şîrovekirin. Wekî çîrok, çîvanok, mamik, methelok, dilok, helbest û stranên gelêrî yên wêjeya devkî, bûne ayidê mirovahiya giştî û welat bi welat belav bûne.

Îro li ser rûyê erdê gellek biwêj û gotinên pêşiyan yên civakên cure bi cure yên hevpar hene. Her yek ji wan bi hemû reseniya xwe di zimanê wê civakê de bi cih bûne. Dîsa her yek ji wan li gorî zimanê din têne wergerandin û ravekirin. Gellek caran jî li hevdu derdikevin û heman wateyê dihundirînin.

Çendî ku biwêj û gotinên pêşiyan ne heman tişt bin jî, peywira wan nêzîkî hevdu ye û bi suxreyê pêk hatine. Biwêj, bêtir bi mexseda şibandin û rûberkirina tiştekî hatine/têne bikaranîn. Di biwêjan de gotin an jî bûyer û hevok ji wateya xwe ya rastîn têne bidûrxistin; û li qedînek an jî hevokên qalibgirtî têne dagerandin. Biwêj, herî kêm ji du peyvan pêk tên.

Biwêj, şopa jiyaneke ceribîner ku di maweya hezar salan de (ku ji gellek tiştên erênî û neyinî yên wekî êş, elem, azar, kêf, dilşadî, aramî û hwd) pêk hatine, nîşan didin. Her yek ji wan wateyeke giran li xwe bar dikin. Her wiha her yek ji wan wekî dermanê nexweşiyekê, êş û jana mirov ditevizînin. Ziman, xurt dewlemend dibe, bila bibe, gava ku ji biwêj û gotinên pêşiyan bêpar be, wekî xwarina rijî û bê xwê ye; tu çêj û tehmê nade mirov. Gava ku biwêj tunebin, ziman kêm û qels dimîne. Biwêj û gotinên pêşiyan nîşan û pîvanga jîrayî û hişmendiya mirovên wê civakê ye. Biwêj û gotinên pêşiyan çendî watedar bin, hişmendiya civaka ku wan biwêj û gotinan hildiberîne jî ew çend xurt û manîdar e. Her biwêjek xwediyê serboriyeke balkêş û manîdar e. Bo nimûne; biwêja "rovî têr e; tirî tirş e." Xwe dispêre serboriyekê. Gava ku rovî zikê xwe ji tirî dadigire, êdî guh nade tirî. Û di ser derbas dibe û qerfê xwe bi tirî dike. Belê beriya ku zikê xwe wî têr bû, xwe motacî tirî didît.

Belê gotinên pêşiyan, wekî kurtasiya ceribandinên jiyanê an jî wekî gotinên bi hikmet ku şîret û zanîneke kûr di xwe de dihêwirînin, têne qebûlkirin. Gotinên pêşiyan, ne diyar e ku ji hêla kê ve hatine gotin. Belê her yek bi serê xwe, hikm û darizandineke xurt nîşan didin. Gava ku mirov dêhna xwe dide gotinên pêşiyan ên ku ji nav dil û mêjiyê civakê hatine nimandin, hemû jî di encama pêwendiyên kesan û têkiliyên civakî de derketine holê. Mirov dikare ji bo gotinên pêşiyan jî mînekekê bide: "Goştê mirov nayê xwarin, belê zimanê mirov tê xwarin." Di vir de wateyeke xaze(mecaz) heye. Teqez tu mirov goştê mirov naxwe. Belê zar û zimanê şêrîn mirov, bi mirov dide xwarin. Gotina pêşiyan a "Mar, bi zimanê xweş ji qulê dikişe." jî alîkariya vê yekê dike.

Tê gotin ku xwediyê biwêj û gotinên pêşiyan nediyar e. Rast e. Nediyar e. Teqez ew biwêj û gotin, cara pêşî ji hêla kesekî/ê ve hatine gotin. Belê ji ber ku wê gavê nehatine nivîsandin û li ser zimanê gel belav bûne wekî ayidê civakê hatine dîtin. Nexwe hemû biwêj û gotin pêşî ji nav dev û diranên hin kesan der bûne û wekî mîrateyeke gelêrî ya mayînde hatine parastin.

Gellek tiştên ku bi saetan nikarin werin vegotin, bi saya biwêjekê bi du peyvan têne vegotin. Tiştên ku bi rojan nayên fêmkirin, bi saya gotineke pêşiyan bi hevokekê têne fêmkirin. Ji bo wê, hewce ye ku mirov hebana xwe ya gotin û vegotinê, ji biwêj û gotinên pêşiyan mişt û tijî bike. Yanî divê ku her mirovek bibe bargirê biwêj û gotinên pêşiyên xwe û nivşê paş xwe îrşad û ronîdar bike.

Kaniya Helbestan

## Rêbendan e, Rêbendan



**Eta Derwîşî**

**Cejn û xweşî ye, keyf û seyran**
**Şadî ye li hemû malan**
**Govend girtin li Çarçira**
**Têkel bûn xûşk û bira**

Cejn û xweşî ye, keyf û seyran
Şadî ye li hemû malan
Govend girtin li Çarçira
Têkel bûn xûşk û bira
Rêyên bi kosp û asteng
Me lê helkirin çira
Bo şadî li vê meydanê
Deng veda li hemû cîhanê
Li 2'yê Rêbendanê
Bilind kirin ala Kurdistanê
Rengê kesk û sipî û sor û zer
Welat dagirt seranser
Têkdan textên zordaran
Li warê me kirin der
Bo çi dibêjin Rêbendan
Bo kurdan xweş kir jiyan
Kurd tê da bûne dawlet
Bûne sahib maf û edalet
Li ser me rabû zor û îlet
Em millet bûn, bûne dewlet
Dema ku Pêşewa hat
Wî ala kire xelat
Rojeka nû bo me dahat
Mizgîn e li her çar hêla
Li Qamişlo û Diyarbikrê
Hewlêrê jî xemla xwe kir
Tev de çûne bajarê Mehabad
Li Kurdistana azad
Li Meydana Çarçira
Kurd hemû bûne bira
Kurd hemû bûne bira

Melek Rojhat:

# “Lİ TURKİYÊ BAREK GİRAN Lİ SER MİLÊ QÎZ Û KEÇÊN ME YÊN KURD HEYE”




# “DİYA MİN ŞÎRÊ XWE Jİ MİN HERAM KİR”

**Hevpeyvîn: Selîm zencîrî**

**Hunermenda hêja, bedew û dengxweş, Melek Rojhat di seredana xwe ya vê carê de bo Kurdistana Başûr, bo başûrê azad, bû mijara gellek weşanan û xemilîna rûpelê zaf Kovar û rojnameyan. Piştî qebûlkirina daxwaza me bo hevpeyvînê, me hevdu li Hotel Çarçira ya bajarê Hewlêrê de dît. Ew her çend ku hunermendek nû û kêmtemen e û xwendina ne di astek bilin de heye, lê xalên baş destnîşan û tilî bo aliyê tiştên balkêş dirêj dike.**

**Di yekem hevdîtinê de sadeyî, atîfe, sedaqet, hesta pak û dilsafiya wê mîna zelaliya ava kaniyan, bala mirov dikişîne. Ji aliyê din jî dengxweşî, kena şîrîn û bedewiya wê mirov diecibîne, û bi wan taybetmendiyan ve perperokan tîne bîra mirov.**

**Xwendevanên hêja!**

**Encama guftûgoya me, hevpeyvîna jîrîn jê çêbû, ku em bala we bo xwendina wê dikişînin.**

**Melek can, berî her tiştî, ez spasiya te dikim ku amadeyî vê goftûgoyê bûyî. Her wiha bixêrhatina te jî bo başûrê azad dikim.**

Ez jî spasiya we dikim. Her wiha keyfxweş im ku bo cara duyemîn e têm Kurdistna azad. Gellek keyfxweş im ku bi vî awayê baş ji aliyê gel ve hatime pêşwazîkirin û gel ez bi tenê nehiştim. Kurdistan gellek xweş e. Îşala emê li vir xizmetên hêja û karên baş pêşkêşî gel bikin.

**Ez dixwazim ji zimanê te bi xwe ve, hunermend Melekê bi xwendevanên Agirî bidim naskirin, keremke?**

Ez hunermend Melek Rojhat, sala 1988’an li devera Baçkala, ser bi bajarê Wanê ji dayîk bûme. Min heta 9 salan li xwendingehên Wanê de bi tirkî xwendiye. Min dibistana Kurdî jî sala 2003’ê dest pê kir, sê meh mabûn ku ez xilas bikim, lê mixabin ez derketim û min nekarî biqedînim.

**Çawa yan kengê bû ku te hest bi dengxweşiya xwe kir û te xwest bibî hunermend?**

Sala 2004’an, min bawerî bi dengê xwe anî, çunku hezkirinek min ya taybet bi strangotinê heye. Ez bi dengê Şivan Perwer, Şehrîbana Kurdî, Kazo, Şakiro û Fatê re mezin bûme û min gellek keyf bi stranên netewî û şoreşvanî dihat. Lê rastiyek jî heye ku li Turkiyê barek giran li ser milê qîz û keçên me yên Kurd ji aliyê malbatan ve heye. Berê malbata min jî qedexe danîne ser min, rê nedan ez biçim dibistanê û bixwînim, di wan 9 salên xwendinê de jî min gellek zehmetî û givaş di vê derheqê de dîtin. Min dixwest bixwînim daku bibim bijîşk(hekîm). Lê eşqa min bi stranê ez bo aliyê hunerê paldam û min bawerî bi dengê xwe anî, lewra min dest bi xebata hunerî kir û heya niha jî didomînim. Ez dê cehdê bikim tiştên baştir ji gelê xwe re pêşkêş bikim.

**Min pêxweş e tu hinek zêdetir li ser zext û givaşên li ser keç û qîzên me li wir bisekinî, gelo ew zext siyasî ne yan civakî?**

Na, civakî. Ew girêdayî bi kultura paşmayî ya me ye. Li wir çima nahêlin keç bixwînin? Çima tepeser dikin? Çima nahêlin beşdarî çalakiyên nav civakê de bin? Çima her çavgirtî û di çarçoveya malbatê de zîndanî dikin? Çima nahêlin manaya rastîn ya jiyanê bizanibin? Çima nahêlin xwe, gelê xwe û derdora xwe bi başî nas bikn? Çima nahêlin li ser tekoşîna bo jiyanê de beşdar bibin û kêrhatîbûn û şiyana xwe di xizmeta pêşveçûna civakênîşan bidin û bizin di xizmeta civakê de?

Mixabin ew rewş hêj berdewam e. Gellek keç û qîzên me yên xwendekar û dengxweş, hunermend û xwedî cewherek hunerî hene ku nahêlin serê xwe bilind kin û zû dizewicînin û dikevin malbatên nebaş, ketine ber derê dergoşê.

Bi giştî keçên me yên Kurd gellek zehmetiyan, êş û azaran dikişînin, astengî ser riya wan heye û jiyan ji wan bûye agir. Bi giştî tiştek cahilî ye.

**Dijkiryara ciwanan li hember de?**

Para pitir bêdengî. Hin jî li malbatê derdikevin û ber bi bajarên dûr direvin. Yan jî diçin serê çiya û dibin gerîla, gellek jî xwe dikujin.

**Çareserî çî ye?**

Berxwedanî. Divêt ne tenê em li hember neyaran rabin, belkî divêt em berê dijî kevneşopî û tîtalên paremayî yên civakê de bisekinin, bixwînin. Divêt zilmê qebûl nekin û teslîm nebin. Çawa ku min qebûl nekir û ez teslîm nebûm, diya min şîrê xwe ji min heram kir, lê min guhdarî nekir û li hember wan de bisebir bûm.

**Li gor ew rewşa heyî û nebaş li wir, kê zêde piştevanî ji te dikir û tu bo nav hunerê pal didayî?**

Zêdetir bav û apê min. Dûre jî birayê min. Bi rastî jî ku gellek hevkariya min kirin, ez spasiya wan dikim û tu car jî ji bîr nakim.

**Berhemên te heya niha?**

Min di sala 2004’an de, albûmek amade kir, lê ji ber wê ku pirranî siyasî û netewî bûn, nehiştin ez belav bikim. CD a min jî belav bûye ku min û hevalek ji Başkala qeyd kir. 9 stran min gotine û 2 heb jî wî gotine. Navê wê **Eşqa Dilan** bû. Her wiha me gellek aheng û konser pêşkêş kirine, him li başûr û him li Rojhilat, him jî li Bakûr. Li Newroza par me çend konser lidarxistin. Coşek mezin û her wiha gel silogan avêtin û ber bi rewşeke siyasî çû, lewra ez hatim binçavkirin û huner ji min hate qedexekirin. Her wiha min li Şipîranê (Rojhilat) jî konserek lidarxist û çiqas gotin ku beşdar nebe û ji boy te nebaş e û dê te bigirin, lê ez beşdar bûm. Çunku ez dixwazim di cihê herî zehmet de kar û xebatên hunerî bikim. Cihê ku kêm kesan qewata wê heye, ez dixwazim hêz û qeweta xwe li wir bişikînim. Bîra min naçe di konsera Şipîranê de, jin pirr guneh bûn, bi çarşevan xwe pêçandibûn. Di konserê de jinek rabû û çarşeva xwe hilda erdî, ku gellek netirs û biwêr hate berçavê min, ez silavan jêre dişînim. Her wiha çend rojan berî niha me li kampa PDK Îranê (li Cêjnîkanê) ahengek bona 2’ê Rêbendanê çê kir. Zêdeyî 2000 kesan beşdar bûn û ez bi germî pêşwazî kirim. Tev Pêşmerge bûn.

**Hunermend Melek Rojhat, zêde teqlîdê dike yan stîl û şêwazek taybet bi xwe heye?**

Ez teqlîda kesê nakim. Divêt her hunermendekê tiştek nû û taybet bi xwe hebe. Divêt hunermend pişta xwe bi hêza xwe qahîm bike. Ez Melek im û min stîla taybet bi xwe heye, lê gellek bi stîla Şivan Perwer û Şehrîbanê diçe. Her çend ku ez dikarim teqlîd yan bizarî gellek hunermendan bikim.

**Melek Rojhat bi tirkî jî distire yan na?**

Na, herçend ez bi tirkî pirr xweş distirm (bi stîla Arabiskî), lê ez naxwazim bi tirkî bistirim. Her çend ku gellek îmkan û derfet jî dane min, lê min nekir û dixwazim xizmeta çanda xwe û gelê xwe bikim.

**Tu ji wan kesên ku Kurd in, lê xizmeta çanda tirkan dikin, çi dibêjî?**

Pirr şerm û eyb e. Mirov dibe wek xwe bijî û şanaziyê bi xwe bike.

Ez Kurd im û dê bi Kurdî jî bistirim. Ez dixwazim di xizmeta huner û kultura gelê xwe de bim. Qeydî nake carna mirov, bi armanc ve bi zimanên din bistire. Ew jî bona wê ku êş, elem, azar, aştîxwazî, camêranî, bindestî û ... ya Kurdan nîşan bide, ne eva ku bo hertim bigre pêşiya xwe.

**Bi raya te tu pêşveçûnek li stran û mûzîka Kurdî li Bakûr de heye yan na?**

Di rastî de pêşveçûnek pirr mezin heye. Her çiqas tirk zext û givaşan tînin, digirin, dikujin, lê ew dev ji xebatên xwe bernadin.

Her sal dengekî nû, stîlek nû û mûzîkek nû bi awayekî profeşnal derdikeve. Bi baweriya min pêşveçûnek baş heye.

**Hunermend Melek ji bilî karê hunerî, çi karek din dike?**

Heya niha ev pirsiyar ji min nehatibû kirinê, lê bo cara yekemîn e ez tînim ziman. Ez mamostayê Quranê me, eva nêzî 8 salan e. Min di dema Mewlûdan de bi başî fêm kir ku dengê min jî heye. Çunku mewlûd jî weke stranan tê gotin. Her wiha ez helbestan jî dinivîsînim.

**Armanca te ji strangotinê, xizmet e, nav û deng e yan bijîva jiyanê?**

Armanca min ya eslî xizmet e. Gelê me gellek azar kişandiye. Me gellek qurbanî û şehîd dane. Li Wanê agir berdane bedena heşt şehîdan ku min bi çavê xwe ew dît. Gellek keçên me ku hatine kuştin, min dîtine. Lewre ez jî dixwazim bibim dengek, hawarek, qîrînek, nalînek û gaziyek ji bo wan.

Ji aliyê dinê jî eşqek min ya taybet bi starngotinê heye.

**Her hunermendekê astengiyên taybet li ser rêya xwe hene. Yên ser rêya te?**

Rast e, pirsgirêka malî derdê gellek ji hunermen e. Lê astenga herî mezin li ser riya min, civak e. Civaka me, civakek paremayî û hişk e. Fikr û hizrên cuda li xwe de cih nade. Dibêjin Melek bûye stranbêj, jinê re eybe û şerm e, nabe ew bistire û derkeve pêşiya xelkê. Ew stranbêj e û kêr me nayê. Nabe derkeve ser ekranan.

Ji malbatê (anku diya min) bigre heya derdor û cîranan, gellek astengî ji bo min pêk anîn, diya min niha jî ji min hirs e û got biçî venegerî û ... her çend bawer nakim ku diya min ji dil gotibin. Niha jî dibêje vegere û dev ji stranan berde û ji xwe re bizewice. Hin caran ewqas ez aciz bûme ku min biryar girtiye êdî ji stranbêjiyê dest hilgirim. Lê piştre ez fikirîme ku ez ne şaş im û divêt berdewam bimînim. Ya ku ew dibêjin, cahilî û paşdemayîn e. Niha ez bi vî karê xwe, gellekan re bûme mînak û ya ku ji destê min hatibe, min derheq hevalên xwe kiriye ji bo ku bixwînin, hunera xwe bidomînim û ...



## "TİRKAN GELLEK ÎMKAN Û DERFET DANE MİN, LÊ MİN NEKİR Û DİXWAZİM XİZMETA ÇANDA GELÊ XWE BİKİM"

## "ASTENGA HERÎ MEZİN Lİ SER RÊYA MİN, CİVAK E"

**Tu mêze bike li ser Eyşeşan, Meryem Xan, Sûsikê û ... tiştên xirabtir gotine û civakê jî ew nedayne nav xwe û qebûl nekirine, lê tu bawerî ku wan şoreş û serhildanek mezin çê kirin û navê wan dê tim di dîrokê de bona xebata wan bimîne.**

Belê rast e.

**Bi kurtî: welat?**

Xaka bab û kalên me ye. Bedew, xweş û rengîn e.

Dayê ez welatê xwe bernadim, xerîbî zor zehmet e, welleh welatê min, ji min re cenet e.

**Muzîk?**

Aramî, tenahî, pêxwarina ruhê mirov e.

**Dengbêjî?**

Huner e.

**Helbest?**

Hestek kûr e.

**Pilan û pirojeyên te ji bo pêşerojê?**

Ji bo cejna Newrozê gellek daxwaziya konseran heye. Him li bakûr û him jî li vira. Ez firkirîme ku neçim bakûr, çunku qedexe li ser min heye. Du caran hatime binçavkirin, cara sêyemîn dê min heps bikin. Her wiha çend konserek me dê li vir hebin. Bi taybetî li heyva şibatê û ez bawer im dê Şivan Perwer jî bê. Her wiha li welatên Ewropayê weke Almaniya, Fransa daxwaza konseran ji min hatiye kirin û renge ez seredaneke vir jî bikim. Kaseteke min jî heye ku ji 11 stranên folklorî û dîwanî û têkel pêk tê.

Niha mijûlê çêkirina kilîpekê me ku Korek Telekom alîkariya min dike. Muzîk a wê jî ya mamosta Helbest e. Her wiha min berhemek anku CD(deng û reng) li ber dest de heye, bi navê **Jana Evînê** ku dê bi zûyî pêşkêşî hemû xelkê Kurdistanê bikim.

**Çima Jana Evînê?**

Ya rast, ne di qaweta hemû kesê de ye ku hejêkirin û evîndariyê bike.

Min tu carî eşq nedîtiye û ez aşiqê tu kesî nebûme. Renge bibêjin hezjêkirin yan eşqek Melekê li jiyan de ye, loma navê wê kiriye Jana Evînê, yan renge evîndar be ku stranên bi vî navî distire. Na, ez her aşiq û evîndarê welatê xwe me.

Rastiyek din jî heye ku di nava keç û xortên me de hejêkirin û evînî qedexe ye. Gelo ma eyb û guneha wê heye ku mirov ji kesekê re hez bike? Lê di nava malbatên me û civaka me de gellek kes bi wê tawanê bûne qurbanî.

**Gotina te ya dawîn?**

Banga min bi hemû malbatên Kurd, ev e ku tiştên paremayî û cahilî li serê xwe de derxînin. Bila bi qîzan jî wekî xortan rêya xwendin, huner, strangotin û azadiyê bidin. Keç jî însan in û maf û hiqûqê xwe hene. Ez serketin, biratî û aştiyê ji bo tev Kurdan û her çar parçeyan dixwazim. Ez keyfxweş im ku di Kurdistaneke azad de me û jiyanek herçiqas bi kêmî jî be, didomînim û dikarim li ziman û hunera xwe xwedî derkevim. Keyfxweş im bi dîtina ala rengîn. Her wiha keyfxweş im bi dîtina xebatkarên weke we û ez karê we jî pîroz dikim. Spas ji te û hemû ew kesên ku guhdariya dengê min dikin. Her wiha spas ji hemû ew kesên ku bi min re mandî bûne û alîkariya min kirine.

**Zor spas. Em jî ji boy te serkevtin û serfiraziyê hêvî dikin.**

Sipas xweş. Hûn jî serkeftî bin.

**Pîrozbahî**

62 salan berî niha, di roja 22.01.1946'an de, Komara Kurdistanê weke yekemîn delweta neteweyî û nûnej a Kurd bi awayekî fermî hate avakirin. Komara Kurdistanê xwediyê gellek destkevtên dîrokî û mezin e. Bi boneya 62'hemîn salvegera avabûna Komara Kurdistanê em pîrozbahiyên xwe ên germ û gurr pêşkêşî neteweya Kurd bi giştî û nemaze partiya avaker a Komara Kurdistanê, PDK Îranê dikin.

**Desteya Weşana Agirî**




**Paşkoya Hejmara 80'ê A Agirî**

**Tatbet Bi Boneya Cejna 2'ê Rêbendanê, 62'hemîn Salvegera Avabûna Komara Kurdistanê**

# Komara Kurdistanê, Yekemîn Dewleta Neteweyî Û Demokratîk A Kurd

**Azad Kurdî**

Di sedsala 20'an de, bo cara yekemîn Kurd bûne xwedî dewleteke fermî bi navê Komara Kurdistanê. 62 salan berî niha di roja 2'ê Rêbendana 1324'ê Rojî(22.01.1946)'an, li bajarê Mehabadê yekemîn dewleta Kurdî hate îlankirin. Sedsala 20'an ji bo Kurdan, serdemeke tarî û nexweş bû, ji ber ku çend şoreş û serhildanên Kurdan di vê sedsalê de hatin serkut û tepeserkirin. Bi avabûna Komara Kurdistanê di sala 1946'an de, hêviyek geş û mezin li cem hemû Kurdan peyda bû û tîrêja ronî ya Komara Kurdistanê gihîşte her çar parçeyên welat.

Wê demê, bi dehan sal bû Kurdan bona diyarîkirina çarenivîsa xwe a neteweyî, xebat û tekoşîn dimeşand, lê serhildanên Kurdan yek li pey yekê rastî têkçûnê dihatin. Bi avabûna Komara Kurdistanê Kurd bûn xwedî dewlet û bi xwe rêveberiya dewleta xwe a neteweyî dikirin û qeder û çarenivîsa xwe girtin dest û ji nîrê bindestî û kedxwariyê rizgar bibûn.

Du taybetmendiyên balkêş ên Komara Kurdistanê hene ku ji wê demê vir de jiyana siyasî ya Kurdan xiste nav qonaxeke nû. Ya yekê **demokratîkbûn** û ya duyem jî **neteweyîbûna** Komara Kurdistanê bû. Komara Kurdistanê li ser destê PDK Îranê pêk hatibû, bû yekemîn dewleta demokratîk a Kurd, ji ber ku partiyeke demokrat ew komar ava kir û li gor bername û armancên wê rêveberî dikir û rêberê wê partiyê, Pêşewa Qazî Mihemed jî bû Serok Komarê Kurdistanê. Cihgirbûna azadiyên demokratîk bi awayekî piratîkî di komarê de, rastiya bê vir û wir a yekemîn dewleta fermî a Kurdî diselimîne û vê yekê rûçihek nûjen û pêşverû da Komara Kurdistanê û bû sembola demokrasî û azadiyê di hemû devera Rojhilat Navîn. Ji ber ku tu hêz û aliyekê û nemaze dijmin û neyarên dagirker ên Kurdistanê bawer nedikirin ku Kurd bikarin rêveberiya dewletê bikin. Lê me dît Kurdan bi vîn û îradeya xwe a xurt û qahîm berevajî vê yekê ji tev aliyekê re selimandin ku heke firsend û derfet ji Kurdan re bihê dan, ew dikarin weke hemû neteweyên din rêveberiya xwe bikin.

Taybetmendiya din a Komara Kurdistanê ku gellek xuya û berçav bû, neteweyîbûn bû. Hebûna dewleteke wekî Komara Kurdistanê di dîroka Kurdistanê de bibû xewn û xweziyek mezin a Kurdan. Ji ber ku di dîroka hemdem a neteweya kurd de yekemîn dewlet bû ku navê Kurdistanê li ser de hebû. Mixabin gellek caran Komara Kurdistanê bi Komara Mehabadê tê binavkirin, li tu belge û dokumenteke dîrokî a serdemê Komarê de navê Komara Mehabadê nehatiye, lê nizanim çima hinek ji kesayetî û medyayên Kurd nabêjin Komara Kurdistanê. Ji ber ku ew dewleteke neteweyî bû. Lewra Kurdan li her çar parçeyan wekî bidestxistiyek dîrokî û neteweyî mêzeyî Komarê kirin û di cejna îlankirina Komarê û hildana ala rengîn a Kurdistanê de amade û beşdar bûn û bû mînakek mezin bona yekîtî, hevxebatî û ruha xebat û tekoşîna neteweyî. Hatina 4 Efserên Kurd yên arteşa Îraqê nemir Mela Mistefa Barzanî, tevî çend hezar ji hêza Barzaniyan ji bo parastina Komara Kurdistanê û Çendîmêvan li Kurdistana Turkiyê û Sûriyê û mînaka xuya a vê rastiyê ye .

Niha jî ku 62 sal bi ser avabûna wê Komara sava û canemerg dibore, armancên demokratîk û neteweyî ên Komara Kurdistanê şanazî û rûmeta Kurdên her çar parçeyan tên hesibandin û PDK Îranê weke avaker û alahilgirê Komara Kurdistanê di çeper û meydana xebat û tekoşînê de her berdewam e û heta serkevtin û bidestxistina armanc, hêvî û xweziyên Komara Kurdistanê dê xebata xwe bidomîne.



# Nihêrînek Kurt Bi Ser Destkevtên Komara Kurdistanê

**Amadekar/ Omîd Esxeran**

62 salan berî niha li 2’ê Rêbendana sala 1324(22.01.1946)’an, yekemîn Komara Kurdistanê li bajarê Mehabadê bi beşdariya pirraniya xelkê deverên cur bi cur ên Kurdistana Îranê, Kurdên parçeyên din yên Kurdistanê, karbidestên Partiya Demokrat ya Kurdistanê û şexsê Pêşewa Qazî Mihemd, li meydana Çarçira a wî bajarî li ser destê Partiya Demokrat ya Kurdistanê hate damezrandin.

Li vir em dixwazin nihêrînek kurt bi ser destkevtên Komara Kurdistanê ku di encama xebatek dijwar û bêveqetiyan û bi xwegorîkirina egîdên Kurd bidestve hatibûn, bikin.

Her wek ku tê zanîn, Komara Kurdistanê tenê 11 mehan dom kir. 11 meh ji bo dewletdariyêheyameke kin e û tu hêzek nikare di wê heyama kurt de, bername yan beşek ji bernameyên xwe cîbicî bike. Bi taybetî bi çavlêkirin ji zirûfa wê demê ya Kurdistanê û rûbera kin ya coxrafî a desthilatdariya Komarê, em digihîjîne vê encamê ku di rastî de asteng e heke desthilatek siyasî bikare arîşe û pirsgirêkên siyasî, civakî û aborî ên xelkê xwe çareser bike. Lê bi şanazî ve di heyama 11 mehan de, Komara Kurdistanê beşeke berbiçav ji xewn û xweziyên gelê Kurd bi cih anîn.



Bêşik ziman nîşaneya sereke a her neteweyekê tê hesibandin, gerek her neteweyek parêzvaniyê ji zimanê xwe ku nîşaneya hebûna wê ye, bike. Di vî warî de em dikarin îşarê bi pêşxistina zimanê Kurdî di Komara Kurdistanê de bikin. Di heyamê desthilatdariya Komara Kurdistanê de, zimanê Kurd bû zimanê fermî yê Komarê. Hin rojname, kovar û belavokên din li Komara Kurdistanê de hatin weşandin ku em dikarin ji wan îşarê bi rojnameya **KURDISTAN**ê(belavoka Partiya Demokrat ya Kurdistanê), ku di 20’ê Befranbara 1342(10.01.1946)’an de, hate weşandin û bi giştî 133 hejmar hate weşandin, kovara **Kurdistan**ê, belavokek siyasî – wêjeyî û giştî, **Hawarî Kurd**, kovarek siyasî, **Hawarî Niştimanî** kovarek wêjeyî – siyasî ku ji aliyê Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistanê ve dihat weşandin, **Helale** ku kovarek wêjeyî bû û li bajarê Bokanê dihat weşandin, **Girogalî Mindalanî Kurd** ku ji aliyê karkerên weşanxaneya Kurdistanê ve li Mehabadê dihat weşandin. Serbarê vana di dawiya temenê Komarê de, gellek pirtûk û weşanên din hatin çapkirin. Hêjayî gotinê ye hewl hate dayîn ku pirtûkên dibistanê ji bo zarokan werin amadekirin. Derheq vê hindê, çend mamosta ji bo hînkirina zarokan bi zimanê Kurdî weke Mamosta **Kerîm Zend** ji Başûrê Kurdistanê ve hatin Mehabadê.

Xebata han ya Komarê bû sedem ku zimanê Kurdî pêşveçûnek bêmînak bi xwe ve bibîne.

Ji bo pêşvebirina çanda Kurdî, bo cara yekem şanoya Kurdî hate lidarxistin. Di nava civakekê de ku pirraniya xelkê vê li nexwenedewariyê de hatibin ragirtin, şano dikare rolek erênî di vê derheqê de bilîze. Çunku têgihîştin ji şanoyê ji bo xelkê nexwendewar hêsan e. Mixabin gelê Kurd di dema desthilatdariya Riza Şah de, li nexwendevariyê de hatibû hiştin û mafê xwendin bi zimanê dayîkê jî jê hatibû qedexekirin. Gava han ya Komarê anku damezrandina şanoya Kurdî weke gavek erênî di warê çandî û kulturî de tê hesibandin. Derheq vê çend em dikarin ji vana îşarê bi şanona **Dayîka Niştiman** bikin ku tê de bindestbûna gelê Kurd dihat nîşandan.

Yek ji destkevtên din yên Komarê ku cihê rûmet û şanaziyê ye, beşdarîkirina jinên Kurd di xebata siyasî de bû. Her wek tê zanîn beşdarîkirina rastîn a jinan di kar û xebata siyasî de, weke yek ji taybetmendiyên civakek demokratîk tê hesibandin. Bona vê çendê ku jinên Kurd beşdariyê di xebatê de bikin, Pêşewa Qazî Mihemed hevjîn û keça xwe ji bo beşdarîkirin di qada xebatê de hay da. Di encama hewl û xebata han de, Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistanê li 24’ê Reşemeya 1342(14.03.1946)’an, hate damezrandin.

Xalek erênî ya Komarê, beşdarîkirina Kurdên parçeyên din yên Kurdistanê bû. Bo mînak em dikarin îşarê bi beşdariya Barzaniyan û çar efserên din bi navên **Mistefa Xoşnav**, **Îzet Ebdulezîz**, **Mihemed Mehmûd Qudsî** û **Xeyrola Ebdulkerîm** bikin ku bi awayek çeleng beşdarî di Komarê de kirin. Çar efserên han di fêrkirina arteşa Komarê de, rolek erênî lîstin. Her wiha Barzaniya li parêzvanîkirin ji destkevtên Komarê, gellek cangorîtîkirin. Hêjayî gotinê ye li Komara Kurdistanê şanazî û rûmeta Generaliyê ji Mela Mistefa Barzanî re bona xebat û tekoşîna wî di hêza parastina Komara Kurdistanê de hate dayîn. Nêzîk 2000 kes ji hêza neteweyî ya Kurdistanê ji Barzaniyan pêk hatibû. Eva nîşaneya vê çendê bû ku Kurd yek netewe ye û çarenivîsa Kurdên hemû parçeyan bihev re girêdayî ye.

Destkevtek din ya Komarê, hevxebatiya du neteweyên Kurd û Azerî bû. Di vê derheqê de em diarin qala lihevhatina navbera Komara Kurdistanê û Fîrqeya Demokrat ya Azerbaycanê bikin. Di hevhatina han de ku li roja 3’ê Banemera 1325(23.04.1946)’an, di navbera her du aliyan de hatibû wajokirin, her du alî li ser vê çendê hevdeng bûn ku divêt di gotûbêjên bi dewleta navendî re her du alî beşdar bin. Her wiha her du alî li ser vê çendê hevdeng bûn ku li dema êrîşa dewleta navendî de, her du alî dê parêzvaniyê ji hev bikin.

Ji bilî vana Komara Kurdistanê gellek destkevtên binirx ên din ji bo gelê Kurd di karnameya xwe a tejî şanazî û rûmetê de tomar kir.

Girîngtir ji hemûya eva bû ku gelê Kurd bo cara yekemîn çarenivîsa xwe bidestve girt. Di heyam kurt a temenê Komarê de, gellek xewn û xweziyê Kurdan hatin cî.

Mixabin piştî heyamek kurt anku 11 mehan, Komara Kurdistanê di encama êrîşa hêzên dagirker û kevneperest ên rejîma Şah de, hate hilweşandin.

Sedemên hilweşandina Komara Kurdistanê şirove û analîzek gellek zêde dixwaze û hewcehî bi lêkolîn û dahûrandineke berfireh heye, me di vê nivîsara xwe de, bi kurtî nihêrînek bi ser wan bidestxistiyên birûmet ên Komara Kurdistanê kir.

Bi xweşî ve, her wek em dibînin gelê Kurd li beşek din a Kurdistanê anku Başûrê Kurdistanê çarenivîsa xwe bidestve girtiye ku eva piştî Komara Kurdistanê duyemîn ezmûna dewletdariya Kurdan bi awayek fermî tê hesibandin û cihê hêvî û şanaziya hemû Kurdan e.

**Çavkanî:**

**Çil Sal Xebat Li Pêxema Azadiyê De, Dr. Ebdulrehman Qasimlo**

**“Kurdha Der Baziyê Siyasiyê Şorewî”( Kurd di lîstika siyasî ya Soviyetê de) “Noşîrvan Mistefa Emîn”**

## Li Navenda 3 Ya Kurdistanê Cejna 62'hemîn Salvegera Avakirina Komara Kurdistanê Bi Coşeke Germ Hate Pîrozkirin




Bi boneya pîrozkirina cejna neteweyî a 2'yê Rêbendanê, 62'hemîn salvegera avakirina Komara Kurdistanê, êvariya roja şemî, 19'ê Çileya Paşîn a sala 2008'an, ji aliyê Navenda 3 a Kurdistanê li Kampa Cêjnîkanê rê û resmeke hêja û berfireh hate lidarxistin. Di şahiya han a pîrozkirinê de, hejmarek zaf ji endamên rêberî ya PDK Îranê û endamên rêveber ên Navenda 3, çend partî û rêxistinên siyasî û kesayetiyên welatparêz û civakî li her 4 parçeyên Kurdistanê, nûnerên Hikûmeta Herêma Kurdistanê, Kadro û Pêşmergeyên Navenda 3 û endam û alîgirên vê partiyê li Komîteyên Hewlêr, Soran, Kampa Kawe û Girdeçal beşdar bûn.

Rê û resm bi xwendina sirûda neteweyî û deqîqeyek bêdengî ji bo rêzgirtin ji şehîdên Kurdistanê dest pê kir.

Piştre, kek **Mihemdsalih Qadirî**, berpirsiyarê Navenda 3 a Kurdistanê bi germî xêrhatina nûnerên Partiyên Kurdistanî û nûnerên Hikûmeta Herêma Kurdistanê kir û beşdarbûna wan di rê û resma han de, wekî rêzgirtin ji Komara Kurdistanê hesiband.

Dûre rêzdar **Mihemednezîf Qadirî**, endamê polîtbîroya PDK Îranê peyama Deftera Siyasî bi vê hincetê pêşkêş kir.

Di peyam han de, birêz Qadirî tevî balkişandin bi ser çawaniya avabûna Komara Kurdistanê, pêwendiyên vê komarê bi neteweyên din re, weke peymana birartiyê tevî Fîrqeya Demokrat a Azerbaycanê, rola Barzaniyan di Komara Kurdistanê de û bidestxistiyên Komara Kurdistanê, qala rewşa Îranê û şanoya hilbijartina Parlemana Heştem a Îranê kir. Di beşek ji peyamê de daxwaz ji xelkê Kurdistanê hate kirin ku di vê şanoyê de beşdariyê nekin.

Şahiya han a pîrozkirinê ji van beşan pêk hatibû:

Xwendina helbest, pexşan û sirûdan û strangotinê ji aliyê beşdaran ve û nimayişkirina çend cur govend û dîlanê ji aliyê Koma Govenda TÎŞK'ê ve û her wiha peyama pîrozbahiya partî û rêxistinên mêvan.

Partî û rêxistinên ku tevlî şahiyê bibûn û peyam pêşkêş kirin, ev bûn:

Rêxistina Xebata Kurdistana Îranê, Partiya Azadiya Kurdistanê, Yekîtiya Şoreşgerên Kurdistanê, Lijneya Devera Beranetî, Melbenda 18' a YNK'ê, Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê, Komîteyên PDK Îranê li Hewlêr, Soran û Komîteyên Yekîtiya Jinan û Ciwanan, Navneda Rewşenbîrî a Behreke, Navenda Werziş, Ciwan û Jinan li Kampa Kawe, Navenda Çalakî û Perwerdekirina Gencan, Yekîtiya Ciwanên Demokrat a Kurdistanê û wd...

Hunermenda dengxweş **Rojîn** bi strana xwe a bi navê "Hêjayê" coşeke germ da şahiyê.

Rê û resm bi govend û dîlana berfireh a beşdaran û bi dengê hunrmend **Melek Rojhat** û bi alîkariya Koma muzîkê a Birader heta seet 17'ê êvar dom kir.



# Biçe Ey Pêşewa!

**Arjen Arî**
**28.01.2008**

Salvegera daxuyandin û damezrandina Komara Mehabad bû 22'ê vê heyvê!

Weke ku carinan dêyine kurd nifiran li zaroka xwe dikin, dibêjin `emrê te bi emrê bilbizêkê be` temenê Komarê jî wisa kurtik, tev de tev de salek e!

Bi gotineke din, Xweda li Meydana Çarçira `zarokeke mirî` dide `dêya` ku bi sedan sal e bêdûnde ye!

Di bawerî û çanda kurdan de piştî mirana bav, Xweda ku kurekî bide dêya bi heml, şînê zêde nagerînin; yên ku tên û diçin vê dibêjin:

`Xweda yek stend yek da...xelaf li we vegerand`...

Komara Mehabad weke dayîna `kurekî` û stendina` bavekî` ye:

Her kurd hûr û gir bi zayîna vî` kurî` dilşad, bi mirina vî `bavî` xemgîn e.

Bo min zarokeke ku `kenê wî lê bibe girî` ye navê Mehabad!


62. salvegera damezrandina Komara Mehabad bi rêya Rojnameya Agirî, li her kurdî dikim

Lê belê, ya ku bav, Qazî kiriye di dîroka berxwedana mirovahiyê de mînakeke şayanî pesn û şabaşê ye...

Çi di dema dadgehê de sekn û helwesta wî ya wêrek û dîlêr, çi bersivên wî yên ku mîna şîqaman li devûrûyê licneya dadwerê bêdad, mîralay Nîkûzad dide:`...destên te dê negihe alaya Kurdistan!Rojekê ,ew al dê li ser banê vê avahiya dadgeha tu min tê de didrizîne, dê daçike û li ber ba dê biheje!` besî min e vê keliyê û herdem bibim mitirbê Qazî!

Min keysa xwe li nivîsekê xweş kiribû.

Lê nivîs carinan ne bi ya min; bi ya xwe dike, û min diajo ber dergehên gunehkariyê de...

Ma ne, kirasên guneh jî ji bo li xwe kirinê ne?

Ya baş ez kefareta sonda xwe ` ez ê ne çîrokê ne jî helbestê neweşînim di malperan de`bidim.

Kerem bikin, bi xwendinê hûn jî bibin şirîkê gunehê min:

**Biçe ey Pêşewa!**
çend kirasên şînê li bejna Mehabêdê kirin!
rondikên çavên xwînê têrî çend çeman kirin.
porê weriyayî qefl qefl, keziyên dahatuyê li Çarçira di stûyê kê de bi kemend kirin!
hêvî daleqandin, ken kişandin ber sêdarê
xec negihîştin nîsanê, bilbizêk negihan mehdarê
beybûnek bû, şebnemek... an guleke berbero
di benê şimakirî de hilawîstî l` Komarê!
biçe ey pêşewa! tena tena ji tirsê xafil
tu ne yê axir î bi qedem û ne tu yî yê ewil!
ji bo kenê zarokan, û xatirê çavên bi kil
biçe pêşewa biçe, tena tena berû sêdarê!

# Komara Kurdistanê Û Huner




**Fatih Salihî**
**W/ Selîm Zencîrî**

Huner diyarde û berçaviyek mirovî ye, dîroka wê li gel serdemê çêbûna mirov de girê xwariye. Di vê derheqê de niha jî kes nikare bervarek diyarîkirî ji bo serhildana hunerê destnîşan bike. Lê bêguman, geşekirina hunerê bêy piştevanîkirina kom û civatên sivîl û dewletî misoger nebûye. Anku ger di qonaxekê de hunera welatek yan deverekê, pêşketin bi xwe re dîtibe, eva di bin siya desthilatek madî(dîtekî) de bidest hatiye. Lewra hikûmet di dirêjiya sedsalên dîrokê de, piştevanên herî mezin yên hunerê bûn û her bi wê qasê jî, caran dijberiya hunerê kirine. Helbet em di vê gotarê de, li ser piştevanî yan dijberîkirina hikûmetan tevî hunerê nasekinin. Belkî em dê qala çarçoveyek yasayî bikin ku geşekirin û xurtbûna hunerê di hundirê wê de ye, ne eva ku di rûyekî de basa hunerê bike û di hundir û waqia xwe de jî dijberiya hunerê bike.

Devera Rojhilata Navîn û bi taybetî Mezopotamiya, yek ji wan cih û deverên bi pûte û pirbiha yên cîhanê ye ku bi hezaran cihwarên kevin û berhemên hunerî tê de hatine dîtin. Eva jî nîşanderê vê yekê ye ku, huner di hundirê xelkê van deveran de ye!. Helbet piraniya van cihwar û berheman li serdemên gellek kevin de çêbûne, nemaze bervara çêbûna hin ji wan vedigere bo berî çêbûna dîrokê.

Lê mixabin di hemû devera Rojhilata Navîn, li sedsala 20’an de, bizavek hunerî nahê dîtin yan hikûmetek nahê xuyakirin ku piştevanî ji hunerê kiribe.

Berevajî vê çendê, li piraniya welatên Rojhilata Navîn de ji ber nexwendewarbûna xelkê û bandora berbiçav a hunerê li ser xelkê nexwendewar, hikûmetan bi tevahî bi hunera resen û rastîn re dijberî kirine. Heke bi awayekî berbiçav jî dijberî nekiribin, hin caran bi dizî ve ew kar kirine.

Yan jî ji wan girûp û kesan piştevanî kirine ku dar û desteyên wan bûne, lewra siroştî ye ku tevî neyarên xwe dijberiyê bikin. Mixabin niha jî hikûmet bi giştî û tepeserker û dîktator bi taybetî ji huner, erk û bandora vê diyardeya mirovî ditirsin û bi tevahî kar û barên hunerî xistine bin desthilata xwe.

Helbet ew binçavkirin û dest biserdegirtina han bi tu awayekê ligel qazanc û berjewendiyên xelkê de hev negire, belkî hevterîb e tevî siyasetên hikûmetên dîktatorî.

Welatê Îranê jî çi berî şoreşa gelên Îranê di sala 1357’ê Rojî de û çi jî piştî şoreşa han, mixabin ji wan welatan e ku hikûmetek dîktator û mîlîtar bi ser de hukim kiriye û bi giştî tu yek ji wan du hikûmetan(sîstema paşatî û rejîma Îslamî) digel hunera xelkê de nebûn, bi awayekî eşkere dijberiya wê kirine û tenê di hizra dewlemendkirina hunera **Derbar** û **Hewzê** de bûn.

Li rewş û zirûfek han û di sala 1945’ê a Zayînî de, li nava yek ji paremayîtirîn deverên demografîk li Rojhilata Navîn ku di warê aborî û pîşesazî de piraniya rûniştvanên wan nexwendewar bûn, komarek ava dibe ku bi şîret û derswergirtin ji dîroka hikûmetên dîktator, çand û hunerê weke aleva pêşketina civakê dibîne. Lewra her li yekemîn roja avabûna Komara Kurdistanê li Mehabadê de, ew rastiya xwe nîşan dide ku hikûmeta Komara Kurdistanê ji bo pêşdeçûna civaka Kurdistanê, girîngiyek taybetî dide xurtkirin û geşandina hunerê di nava xelkê Kurdistanê de.

Lewra ye ku ji bilî bi fermî nasandina zimanê Kurdî û xwendina bi zimanê dayîkê di xwendingehan de weke bingeha pêşketina warê perwerdehiya civaka Kurdistanê, di devera bin desthilata Komara Kurdistanê de, bi avakirina Sînemaya Millî û tiyatroya Kurdî û weşandina çendîn Kovar û Rojnameyan, ev rastiye selimand ku hikûmeta Komara Kurdistanê di bingeh de pêşketinxwaz û modern bûye.

Bê guman hunera pêşketî, nîşaneya hebûna welat û hikûmetek pêşkeftî ye.

Ji ber ku huner, sembola çandî ya her welatekê ye. Di vê navberê de tiyatro weke dayîka hemû huneran, her 6 hunerên din jî di xwe de cih dide û sembola sereke ya pêşketina her civakekê ye. Bi xweşî ve di serdemê Komarê de hunera tiyatroyê, alavek zaniyarîdan bi xelkê û herwiha alavek bûye ji bo rewşengeriyê di nav civatên xelkê Kurdistanê de. Her ji ber wê ye ku nimayîşa “Dayîka Nîştîman” di dema xwe de karî bala xelkê bo aliyê xwe rabikişîne û bandor û karîgeriyek zaf li ser bînerên xwe bike.

Me li vê gotarê de cehd nekiriye ku Dayîka Nîştiman binirxînin, belkî siroştî ye ku kêmasiyên zaf hebin, ji ber ku heya wê demê, nimayîş û tiyatro bal xelkê Kurdistanê tiştek xerîb û bîhanî bûye û nemaze rewşenbîrên Kurd jî li wê serdemê tevî nimayîşê nenas bûn. Lê serbarê evana jî, di serdemê Komarê de biha û pûteyek zaf bi tiyatro û nimayîşê dane. Eva jî wê yekê diselimîne ku Komara Kurdistanê cudahiyek berbiçav tevî hikûmetên din yên serdest bi ser Rojhilata Navîn de heye. Hikûmetek ku bingeha wê li ser huner, çand û perwerdekirina civakê hatibe danîn, bê guman destkevtên yekcar mezintir bi dest tîne. Herçend ku mixabin temenê Komara Kurdistanê dirêj nebû, lê bûna me di qonaxa niho de, destkevta Komara Kurdistanê ye.



agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**

## Biryarnameya Sêyem A Konseya Ewlekariyê Li Dijî Îranê Di Rê De Ye



Wezîrên Karê Derve ên 5 endamên dayîm ên Konseya Ewlekariyê û Almaniya li ser biryarnameya nû li dijî Komara Îslamî a Îranê li hev kirin.

Bi sedema liberçavnegirtina daxwazên civaka cîhanî bona dewlemendkirina Uraniyûmê, heta niha rejîma Îranê ji aliyê Konseya Ewlekariya NY ve berbirûyê du biryarnameyên dorpêçan bûye (biryarnameyên 1737 û 1747).

Heftiya borî, piştî çend meh bas û nîqaşan, endamên girûpa 5+1 li Berlînê li hev civiyan û li ser derkirina biryarnameya sêyem a dorpêçên aborî li dijî Îranê li hev kirin û li heftiya tê dê pêşkêşî welatên din ên endam di Konseya Ewlekariyê were kirin û dengdan jê re bihê kirin.

Biryarnameya sêyem a dorpêçan li dijî Îranê di rê de ye û li gora vê biryarnameyê, gellek dorpêçên nû ên aborî li ser navendên leşkerî, diravî, rêwtiya rayedarên dewletê û bi taybet du bankên din yên Îranê dê bên meşandin.

## Komara Îslamî A Îranê Dijberiya Xwe Tevî Cîbicîkirina Madeya 140 Ya Qanîna Bingehîn A Îraqa Federal Diyar Kir




Komara Îslamî a Îranê jî weke neyareke Kurdan, dijberiya xwe tevî cîbicîbûna madeya 140 a Qanûna Bingehîn a Îraqa Federal îlan kir.

**Menûçêhr Mutekî**, Wezîrê Karê Derve yê vê rejîmê di hevpeyvînekê de bi rojnameya "Asharqalawsat"ê li Bulgaristanê, qala gelaleya pêşniyarekî a vî welatî di konferansa vê dawiyê a cîranên Îraqê li Turkiyê kir û da xuyakirin ku Komara Îslamî alîgirê paşdexistin û cîbicîkirina madeya 140 a Destûra Bingehîn a Îraqa Federal ji bo demeke nediyar e.

## Ji Ber Perwerdehiya Bi Zimanê Kurdî, Navendeke Çandî Hate Daxistin

Li Kurdistana Îranê xwendin û perwerdehî bi zimanê Kurdî qedexe ye. Çend rojan berî niha Komara Îslamî a Îranê navenda **SOMA** ku binkeyeke hînkirina zimanê Kurdî û lêkolînên Wêjeyî ye, daxist. Sedema daxistina Somayê, xebatên wê di warê perwerdekirina zimanê Kurdî de bûye.

Her wiha, rêveberên 3 pêşdibistanan li bajarên cur bi cur ên parêzgeha Kurdistanê ji beşa siyasî- ewlekarî ya parêzgariyê re hatine vexwendin. Sedema vê vexwendinê perwerdehiya zimanê nefermî û lawazkirina çanda neteweyî [Farsî] bûye û bona vê yekê gefa daxistinê ji wan pêşdibistanan hatiye xwarin.

Van 3 pêşdibistanan ji destpêka sala nû virda dest bi perwerdehiya zimanê Kurdî kirine. Ji ber vê yekê şîrê vexwarinê ji van sê pêşdibistanan hatiye qutkirin.

## Festîvala Cegerxwîn Di 10'ê Şibata 2008'an De Li Hewlêrê Dê Bihê Lidarxistin



Bi boneya 23 saliya koça dawîn a helbestvanê Kurd, seyda Cegerxwîn, dê 10'ê Şibata 2008'an, li Hewlêrê Festîvala Cegerxwîn bihê lidarxistin.

Festîvala Cegerxwîn, di roja diyarîkirî ê li Hola Pêşewa ya Wezareta Rewşenbîrî lidar keve û ji aliyê vê Wezareta Kurdistanê ve ê bê rêvebirin.

Ji her çar parçeyên Kurdistanê, gellek kesayetiyên navdar, Profesor, nivîskar, lêkoler û rewşenbîr û ji Kurdên Kafkaziya û Ewropayê gellek kes hatine vexwendin.

Li gora agahiyan, Festîvala Bibîranîna Cegerxwîn dê 3 rojan berdewam bike û xebat û çalakiyên cur bi cur dê bên pêşkêşkirin.

Festîvala Cegerxwîn ji ber hinek sedema paş de ketibû.

## Di Operasyoneke Serkevtî A Neştergeriyê De, Keça Ku 8 Pê Hebûn, Rizgar Bû



Zarokeke 2 salî ku 8 pê û dest hebûn, operasyoneke neştergeriyê li ser hate kirin û dest û pêyên wê ên zêde jê hatin veqetandin.

Li gora rapora BBC'yê, navê keça han **Lakşmî Tatma** û xelkê Hindistanê ye ku bi awayekî zikmakî bi 8 dest û pêyan hatiye dinê.

Tatma 27 seetan di bin neştergeriyê de bûye û dest û pêyên wê ên zêde jê hatine cudakirin. 30 Pisporan ew operasyona dijwar encam dane heta ew keç bikare jiyana xwe a normal dest pê bike.

Di warê laş de, ew saxlem e, lê ji ber şekla ecêb a laşê xwe nedikarî rê biçe. Bijîşkan gotine ku heke ev operasyon jê re nehatiba kirin, heta 13 saliyê zêdetir nedikarî bijî.

## Kurdekî Herî Biemr Li Urmiyê Çû Ber Dilovaniya Xwe



Di çend hejmaran berî niha a Agirî de me Kurdekî Urmiyê yê bimer (117 salî) bi navê Hecî Salih Zencîrî nasand. Mixabin Hecî Salihê bitemen, roja 17'ê Çileya Paşîn li bajarê Urmiyê çû ber dilovaniya xwe. Heta niha kêm kesên biemr wekî Hecî Salih hebûne ku di wî temenê mezin de serxwe û ektîv bimînin.

Ew xwediyê 6 kur, 4 keç, 89 nevî û 154 nevîçikan û 2 çirçirokan jî bû. Riha wî şad be.